

**Prof. Dr. Dogu Ergil**

## Gelo Kurd û Tirk dixwazin bi hev re bijîn?

Prof. Dr. Dogu Ergil ji Rûdawê re axifî û rewşa sosyo-psîkolojîk a di navbera gelê Kurd û Tirk de nirxand. Ergîl got ku "niha di herdu aliyan de psîkolojiyeke xirab a negatîf heye." Derbarê çareseriyê de jî rawestandina çekan wek gava yekemîn nîşan da û got: "Konsensûsa rihspiyan û kesên bijartî pêwîst e, lê divê bê pirsîn: ka gelo Kurd û Tirk dixwazin bi hev re bijîn an na?" ▶2

# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA

Xwendevanên Rûdawê bêtir dizanin



ڕێبوار لەرێگەی هاتنیدا بۆ بەریتانیا

5 شەو گەڵای درەختی خوارد

7◀

**Deutschland 1,50 Euro** | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK **Hejmar / Nr. 67** | 19 Cotmeh / Oktober 2010 | **www.rudaw.net** | **info@rudaw.eu**



## Serjimêrî sînorê Kurdistana Mezin destnîşan dike!

Wezîrê Rewşenbîrî yê Kabîneya borî, Felekedîn Kakeyî, rexneyên tund li bêhelwêstiya Kurdan derheqê paşxistina serjimêriya giştî digire û dibêje bi vî awayê niha mijara diyarkirina sînorên Kurdistana Mezin di qonaxa jidestçûnê de ye. ▶7

## Penaberên Muqublê bêzar in

Bi salan e bi dehan malbatên Kurd ên Rojavayê Kurdistanê li kampa Muqublê ya li Parêzgeha Duhokê bicîh bûne. Ew ji tirsa kuştin, girtin û îşkenceya Hikûmeta Sûriyê reviyane Başûrê Kurdistanê. Weke hemû hevwelatiyên Îraqê, zarokên wan jî diçin dibistanan, lê ew ji gelek maf û xizmetkariyan bê par in û di rewşeke xerab de dijîn. Ew malbat rexneyê li Komîsyona Bilind a Penaberan a Rêxistina Neteweyên Yekbûyî (UNHCR) dikin ku serdana wan nakin. Penaberan ji Rûdawê re gotin ku dixwazin Parêzgarê Duhokê bibînin, lê rê ji wan re nehat dayîn, lewma wan di destpêka vê mehê li ber deriyê Parlamena Kurdistanê xwepêşandanek li dar xistin û diyarkirin ku heta daxwaziyên wan neyên pejirandin, ew ê dest ji grevê bernedin. ▶ 5

## Çavê Ewrûpa jî li dadgehkirina KCK'yiyan e ... ▶2



Wêne:DIHA






## CNN raporeke Rûdawê diweşîne

**Hewlêr (Rûdaw) -** Bernameya IReport a kanala CNN a Amerîkî raporeke beşa îngilîzî ya malpera Rûdawê diweşîne ku behsa darvekirina çalakvanên Kurd bi awayên nihênî li Îranê dike. Rapora Rûdaw ji zardevê Berdevkê Rêxistina Mafê Mirovan li Îranê dibêje ku "Di sala 2009'an de 402 kes li Îranê hatine darvekirin ku hejmareke zêde ya wan kesan Kurd bûn."

Rapora ku ji aliyê peyamnêrê Rûdawê Hemîd Muxtarî ve hatiye amadekirin, ji zardevê çalakvanên mafên mirovan û partiyên Rojhilatê Kurdistanê eşkere dike: "Îran ji tirsa serhildan û nerazîbûna gelê Kurd, çalakvanên siyasî yên Kurd bi nihênî bi darve dike."

Amadekerên nûçeyan di CNN'ê de derbarê bernameya IReportê de dibêjin: "piştî ku raporên cîhanî yên herî bihêz, giring û pêwîst ji aliyê CNN ve tên pesend kirin, ew dibin beşeke bernameya IReport û tên weşandin."

Dibe ku ev yekemîn car be rojnameyeke Kurdî bibe çavkanî ji bo kanala CNN a Amerîkî. Bernameya IReport nûçeyan ji rojname û malperên cîhanê werdigire. Hemû kesek dikare ji wan re raporan bişîne, ger CNN pesend bike, wê werin weşandin.

### Seroka Giştî ya Federasyona Mafên Mirovan a Navnetewî, Souhayr Belhassen:

# Doza girtiyên KCK'ê ji bo me sembolîk e

**Bawer Çem** Amed

Doza şaredar û siyasetmedarên Kurd ku di "Operasyona KCK'ê" de hatibûn girtin û li Amedê derdikevin pêşberî dadgehê, beriya rûniştina dozê bi berfirehî bala raya giştî ya Tirkiyê û Kurdistanê kişand ser xwe. Ji Ewrûpayê jî bi dehan çavdêr ji bo şopandina dozê berê xwe dane Amedê.

Doza KCK'ê ku ji 151 bersûcan pêk tê, di 18'ê vê mehê de, li 6'emîn Dadgeha Cezayê Giran a Amedê tê rêvebirin. Ji ber ku hejmara bersûcan pir e, bi dehan çavdêrên biyanî tevli danişînê dibin û ji bo darizandina girtiyan saloneke taybet hate amadekirin. Ji bo 160 parêzerên girtiyan cih hate veqetandin. Di serî de Seroka Giştî ya Federasyona Mafên Mirovan a Navneteweyî (FIDH) Souhayr Belhassen, ji Delegasyona Hiqûqê ya Belçîkayê 3 parêzer, Endamê Partiya Komunîst a Partiya Fransayê Dominique Torre, ji Delegasyona Saziyên Sivîl a Îtalyayê 4 kes, Delegasyona Swêdê bi 3 nûneran, ji Delegasyona "Die Linke" ya Almanyayê, gelek parlamenter û nûnerên saziyan wê tevli danişînê bibin û çavdêrî bikin.

**M. Emîn Aktar**



Eger bersûc bêne berdan, wê di nava Kurdan de hêviya aştiyê xurt bibe û agirbesta PKK'ê jî dirêj bibe.

**Souhayr Belhassen**



Eger Tirkiye bixwaze derkeve qadên navneteweyî, divê di mijara demokratiyê de pêngavên cidî biavêje.

**Reyhan Yalçindag**



Ev operasyona li hemberî siyasetmedarên Kurd, aktîvîstên jin û nûnerên saziyan operasyoneke siyasî ye.

Souhayr Belhassen tevî Serokê Giştî yê Komela Mafê Mirovan - ÎHD'ê Ozturk Turkdogan beriya rûniştina dadgehê daxuyaniyek da çapemeniyê û anî ziman ku ew gelek girîngiyê didin dozê û got ku ger Tirkiye bixwaze derkeve qadên navneteweyî, divê di mijara demokratî û mafê mirovan de pêngavên cidî biavêje.

Belhassan herwiha got ku ew doza siyasetmedarên Kurd û nûnerên rêxistina civaka sîvîl wekî sembolekî dibînin.

**Parastina xwe bi kurdî dikin**

Serokê Baroya Amedê M. Emîn Aktar ku ji Rûdawê re axivî, diyar kir ku wê hemû girtî parastina xwe bi kurdî bikin û wiha axivî: "Parastina bi zimanê kurdî mafekî însanî ye. Hêviya me ew e ku dadgeh vî mafî nas bike. Wisa dixuye ku dadgeh belkî wan bi zimanê kurdî guhdar bike lê wê ji wan re tercûman tayîn neke. Ji ber ku muwekîlên me dixwazin kurdî bi rêya tirkî ji dadgehê re bê wergerandin, di warê parastinê tu astengî tune ye." Aktar destnîşan kir ku Kurd weke di her warê jiyanê de dixwazin hemû tevger, helwest û jiyana xwe bi zimanê xwe yê dayikê pêk bînin û xwest ku dadgeh qeyd û bend li zimanê kurdî nexe. Aktar da zanîn ku ji ber 151 kes tênê darizandin û wê 900 rûpel angaştname bê xwendin, dibe ku danişîn ji meheki zêdetir bidome. Serokê Baroyê Aktar, bal kişand ku ger bersûc bêne berdan, wê di nava Kurdan de hêviya aştiyê xurt bibe û agirbesta PKK'ê jî dirêj bibe. Lê eger girtî neyên berdan, wê çaxê dirêjkirina agirbestê jî dikeve xetereyê.

**'Qirkirina siyasî ye'**

Alîkara Serokê Giştî yê ÎHD'ê û parêzera girtiyan Reyhan Yalçindag jî destnîşan kir ku muwekîlên wê 18 meh in bi awayeke niheq û li derveyî hiqûqê têne girtin û wê jî weke hemû derdoran girtina siyasetmedarên Kurd weke "Operasyona qirkirina siyasî" bi nav kir. Yalçindag bi bîr xist ku siyasetmedarên Kurd ji ber serkeftina DTP'ê ya di hilbijartinên 2009'an de bûne hedefa tolhildana hikûmetê û wiha axivî: "Ev operasyona li hemberî siyasetmedarên Kurd, aktîvîstên jin, nûnerên saziyên sivîl operasyoneke siyasî ye, eleqeya wê bi hiqûqê tune ye. Bi sedan parêzer wê siyasetmedarên Kurd biparêzin û bala raya giştî ya navneteweyî bikişînin ser vê dozê." ▶14

***Têbînî:** Di dema amadekirina vê raportê de hîn rûniştina dadgehê pêk nehatibû.*

# Polîsê Holandî pizîşkekî Kurd bi şaşî binçav kirin






**Holanda (Rûdaw) -** Bi tawana saxtebûna bawernameyê, polîsê Holana pizîşkekî diranan ê Kurd ku regeznameya wî ya Holandî heye, binçav kir.

Roja 25'î Îlona 2010'an polîsê Holandî li bajarokê Zaltbomilê ragihand ku ji ber wî pizîkî bi salan bi bawernameya saxte karê pizîşkiya diranan dikir, ew hat binçav kirin, lê di çend rojên borî de derket ku îdiaya polîs û Desteya Vekolîna Tendirustiya Holandî derbarê pizîşkê Kurd ne rast bû û ew pizîşkekî Polonî-Kurd e.

Pizîşkê binçavkirî ji bo medya Holandî eşkere kir ku ew ne xelkê Polonya ye, ji ber ku xelkê Başûrê Kurdistanê ye û demekê wek penaber û bi armanca xwendinê çûye Polonaya. Piştî ku li wir bawernameya xwe derbarê pizîşkiya diranan bidest dixe, ew hatiye Holanda, lê li wir di sala 2004'an de daxwaza wî ji bo karkirinê hat red kirin, lê ew berdewam bû li ser karkirina xwe.

Rûniştvanên bajarokê Zaltbomil ku berê li cem wî pizîşkî diranên xwe çêkiribûn, piraniya wan razîbûna xwe ji karê wî pizîşkê Kurd anîn ziman.

Pizîşkê Kurd ê 40 salî piştî ku azad dibe, carek din bi agahdariya dezgehên fermî dest bi karê xwe kiriye.

**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Serokê Civata Rêvebir**
Nûredîn Weysî
nuradinwaisi@rudaw.net

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Sîdar Bengîn Epozdemir
sidar@rudaw.nl

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Dipl. Kfm. Abdulletif Canimana
info@canimana.de

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Prof. Dr. Dogu Ergil:

# Konsensûsa kesên bijartî pêwîst e

**Ergîl ji bo çareseriyeke mayînde rawestandina çekan gava yekemîn dibîne, lê gava herî girîng jî wiha bi nav dike: Gelo jiyaneke bi hev re tê xwestin an na?**



Wêne: DIHA

**Prof. Dr. Dogu Ergil: Ti mantiqeke çekan tune ye, tenê dixwaze dijberê xwe tune bike.**

Eger îro pirsgirêka Kurd li Tirkiyê bê tirs û di nava azadiyekî de kêm be jî, tê guftûgokirin, yek ji kedkarê vê pêvajoyê jî Prof. Dr. Dogu Ergil e. Dema di sala 1995'an de li vî welatî "Rapora Rojhilat" amade kir, tiştên li hemberê wî hatin gotin, hîn jî nehatine jibîrkirin. Rapora navborî ji lêkolînên berfireh ên ku li herêmên Kurdan û warên ku Kurdan koçê wir kirine, pêkdihat. Herwiha di raporê de lêkolînên li ser ezmûnên li Îrlandaya Bakur, Brîtanya û Îspanyayê pêkhatine jî hebûn.

Dogu Ergil di salên 2005 û 2008'an de du xebatên nû yên girîng jî amade kir ku di wan de pêvajoya pirsgirêka Kurd a di nav 15 salên dawî de hatiye nirxandin, cîh digire. Ergil di van raporan de ji beşên zanîst ên wek siyaset, sosyolojî, psîkolojiya civakî û têkiliyên navnetewî gelek sûd wergirtiye. Di vê çarçovê de li ser navê Rûdawê me bi Ergîl re ku ji bo civîneke bi navê, 'Divê ji bo aştiyeke mayînde çi bê kirin' hat Rihayê, ev hevpeyvîn çêkir.

**Rûdaw: Divê çi bê kirin da ku çek bên rawestandin?**

**Prof. Dr. Dogu Ergil:** Dema ku hûn dest bi pevçûnê bikin, aqil diçe, di şûna wî de çek diaxivin. Li cihê ku çek wek alavê siyasetê tên bikaranîn, zimanê siyasetê jî tund dibe. Ti mantiqeke çekan tune ye, tenê dixwaze dijberê xwe tune bike. Dema ku çek radiwestin, aqil derdikeve holê. Heta kengê? Heta ku jiyana bi hev re bê xwestin.

**Baş e, lê dema ku jiyana bi hev re neyê xwestin?**

Divê em bipejirînin ku yên din jî hevwelatî ne. Lihevhatin diyardeyeke civakî ye. Binêrin, ez dibêjim lihevhatin, ji ber ku hevwelatiyê heman welatî ne, navê wê jî dibe lihevhatin. Ev ne diyardeyeke siyasî ye.

**Di vir de qet rolê netewperestiya teng a dewletê tune ye?**

Pirsgirêka me ne netew e, tengbûna wê û binavkirina wê ya teng e.

**We di axaftinên xwe yên berê de behsa civaka vekirî dikir...**

Civaka vekirî diyardeyeke wisa ye ku tiştên ku ji dîrokê tên, cudahiyên ku ji dîrokê heta niha hatine, em wan bibînin û karibin bipejirînin. Tenê dîtina wê têr nake, divê siyaset jî wê bipejirîne û hiqûq wê tevlî nava xwe bike; ango divê ev cudahî ne wek xetere û tehdît bên dîtin, lê wek taybetmendiyek, dewlemendiyeke civakê bên dîtin û di nava dad û hiqûqê de jî bên parastin. Du dayikê vî welatî hene. Kesên ku dayika wan Tirk e, ketine nav nifûsê û bûne fermî, lê kesê ku ji dayikeke Kurd hatine dinyayê nehatine hesibandin. Zarokên ku ne ji dayikê Tirk in wek zarokên ji dêmariyê hatine dîtin, jinên ku ne Tirk in jî nehatine markirin.

**Gelo divê rolê siyasetmedaran çawa be?**

Siyasetmedar divê tenê rêyan vekin. Ew tiştên ku dibin sedemê pevçûnan û şeran divê bînin ser maseyê û çareser bikin. Ya duyem; herdu aliyan jî gelek êş dane hevdu. Aktorê yekem, ango dewlet, xwediyê hêzê û gelek derfetan e. Medyaya wê heye, îdeolojiya wê heye, dadgehên wê hene. Ji ber vê yekê gelê Tirk bi piranî di wê baweriyê de ye ku Kurd îxanetê li vî welatî dikin. Bi dilsozî ji vê yekê bawer dikin. Ji ber ku dewletê ev alav û derfetan wiha bikaraniye. Li vî welatî, ji sala 1985'an heta îro, 5 milyon kes wek leşker xistine nav artêşê, çek dane wan û gotine, 'li welatî te dijmin heye'. Eger vê propagandayê neke, nikare ti kesî bişîne ber mirinê. Li aliyê din jî wiha tê gotin, 'dewleteke ku bav û kalên te kuştiye, te nahesibîne heye'. Niha di herdu aliyan de psîkolojiyeke xirab a negatîf çêbûye.

**Wê ev psîkolojiya negatîf çawa ji holê bê rakirin?**

Beriya her tiştî konsensûs a kesên bijarte pêwîst e. Ango konsensûsa mirovên pêşeng, rihspî û di raya giştî de xwediyê gotinê. Paşê divê bêyî ku paşeroja xwe jibîr bike, pêvajoya lihevhatinê û hev borandinê, bexşandinê lazim e. Binêrin, ez dibêjim ku paşeroj divê neyê jibîrkirin; neheqiya ku li min hatiye kirin ez dikarim biqurtînim lê ez ji bîr nakim, ji bîr nakim ji ber ku tu careke din dubare nekî! Lêborîn ev e. Leborîn ne jibîrkirin e. Tiştên ku tên kirin di mêjiyê kolektîf de dimîne, ji ber ku careke din dîsa nebe.

**Hûn aktorên vî karî amade dibînin?**

Ka hûn bêjin ka ev aktor amade ne yan na?

**Ji bo çareseriyeke mayînde divê aktor kî bin?**

Rayedarên ji herdu gelan, ji gelê Tirk û Kurd. Lê ev tişt, wek ku li bajarên Yûnan ên kevin dihat kirin, gel li meydanê bicivînin û jê re bêjin wiha ya, na. Wê kesên xwediyê gotinê hebin, nûnerên hêzên cuda hebin. Dema ku nûneren Kurdan bên hilbijartin, divê ji karkeran, ji radîkalan, ji lîberalan, ji alîgirên federasyonxwazan jî nûner hebin. Aştiyeke ku tenê di navbera hêzên çekdar ên Kurd û Tirk de bê kirin, ti encamek nade.

**Wisa xuya dike ku rawestandina çekan nêzîk e, lê têr nake...**

Belê, rawestandina çekan gava yekemîn e. Ya girîng ew e ku jiyaneke bihevre tê xwestin, an na. Ev tişt di navbera gelê Kurd û Tirk de bê xwestin, divê bê gotin. Paşê, wek me berê jî got, danûstandina nûnerên herdu aliyan tê û ev nûner wê di çarçova hiqûqê de çareseriyek bîbîne.

*Havpeyvîn: Mustafa Arisut*



Niha di herdu aliyan de, di nav Tirkan û Kurdan de, psîkolojiyeke xirab a negatîf heye.

# Kêfa Kurdan ji YE re tê

**Wladimir Van Welgenburg**

Li gor ankêta dezgeheke Amerîkî ku meha borî hat belavkirin, li Tirkiyê baweriya Kurdan bi dezgehên artêş û polîsê bi rêjeyeke berçav kêm bûye, lê kêfa wan ji Yekîtiya Ewrûpa (YE) re tê.

Ankêta navenda Pew Global Attitude ku bingeha wê li Washingtonê ye û rapirsiyan li ser astê cîhanê saz dike, ji 12-30'î Nîsanê ankêtek li Tirkiyê sazkir û derencamê wê derket ku tenê ji sedî 54'ê rûniştvanên Tirkiyê dixwazin welatê wan bibe endamê YE. Ev daşikandina mezin a meyldariya Tirkan ber bi rojava, di dema desthilata Recep Erdogan de ku serokatiya partiyeke Îslamî dike, zêde bûye.

Li gor rapirsiyeke heman saziyê, sala 2005'an ji sedî 68'î rûniştvanên Tirkiyê alîgirên endambûna Tirkiyê di YE de bûn. Nêzîkî 10 salan berî ku Erdogan bibe serokwezîr, wî dijatiya endambûna Tirkiyê di YE de dikir û digot YE, wate: "Komela Welatên Fileh ên protestant." Lê Erdogan du rojan berî referendumê di dîdareke rojnameya Wall Street a Amerîkî de got, „niha ew nerîna min a berê li ser YE nemaye piştî ku YE hatiye guhertin."

Li gor ankêtê rêjeyeke zêde ya kesên ku kêfa wan ji YE re tê Kurd in ku li Başûr û Rojhilatê Tirkiyê dijîn û rewşa wan a aborî bi qasî navçeyên Tirknişîn ne baş e. Di beşeke din a ankêtê de, derdikeve ku baweriya piraniya Kurdên Tirkiyê bi dezgehên ewlekarî, artêş û polîsan nayê. Tenê ji sedî 37'ê Kurdan van dezgehan baş dibînin. Bi baweriya çavdêran ev Kurd alîgir û endamên partiya Erdogan, AKP'ê ne.

Ev rêje sala 2007'an pir zêdetir bû li gor ankêtên navxweyî yên Tirkiyê. Wê demê ji sedî 67'ê Kurdan digotin baweriya wan bi saziyên çekdar ên Tirkiyê heye, lê Tirk zêdetir polîs û hêzên ewlekariyê yên Tirkiyê bilind dinirxînin. Li gor ji sedî 68'ê Tirkan, hêzên artêş, polîs û ewlekariyê yên Tirkiyê roleke erênî dilîzin di dabînkirina aramiya Tirkiyê de û bandoreke baş li ser Tirkiyê dihêlin.

Hikûmeta AKP'ê dixwaze çi bike

# Çareseriyeke demokratîk an tasfiye?

**Firat Baran** Enqere

Li Tirkiyeyê piştî agirbesta PKK'ê û li Girava Îmraliyê hevdîtînên bi Ocalan re û li Enqerê jî bi nûnerên BDP'ê re hatin kirin, atmosfera siyasetê hinek nerm kirin, lê çendîn helwestên hikûmetê yên dawî ev atmosfer guherand û bû sedemê şik û gumanan. Hikûmet li Bexda, Şam, Tehran û Washingtonê ket nava trafîkeke dîplomasiyê û dema tezkereya operasyonên derveyî sînor dirêj kir û hevdîtinên bi Ocalan û BDP'ê re rawestand. Hikûmeta AKP'ê ji aliyê din ve bang li PKK'ê dike û jê dixwaze ku dema bê çalaktiyê dirêj bike û hêzên xwe bikişîne derveyê sînor; PKK û Ocalan jî dibêjin ku armanca hikûmetê ne çareserî ye, lê tasfiye ye û sînyal didin ku di 31'ê Cotmehê de dawî lî dema bê çalaktiyê bînin.

### Ocalan: Dibe ku ez xwe paş ve bikişînim

Daxuyaniyên ku ji PKK û Ocalan tên, hêviya ku ji bo dirêjkirina dema bê çalaktiyê di raya giştî de çêbûbû, şikand. Ocalan di hevdîtina bi parêzerên xwe re daxuyand ku ew ê heta roja 31'ê Cotmehê bisekine û eger di vê navberê de pê re danûstandin çênebin, wê xwe bide aliyekî. Ocalan herwiha daxuyand ku piştê ew xwe paş ve bikişîne wê KCK înîsiyatîfê bike destê xwe û got, "Şerekî dijber li ber derî ye."


Hasîp Kaplan

> Li aliyekî dibêjin ji çiya dakevin, li aliyê din du hezar siyasetmedarên sivîl dixin girtîgehê

KCK jî daxuyand ku ji bo banga wan a di 30'ê Îlonê de kiribûn bibe bê çalakiyeke demdirêj, Hikûmeta AKP'ê ti gaveke erênî neavêtiye û eger şer careke din destpê bike ew ne berpirsiyar in.

### Firat: Cara yekem e ku hikûmetek çareseriyê dixwaze

Parlamenterê Edenê û Cîhgirê Serokê Giştî yê AKP'ê yê berê Mîr Dengîr Firat ji Rûdawê re ragihand ev cara yekem e ku hikûmetek dixwaze pirsgirêka Kurd bi rêyên demokratîk çareser bike. Firat da zanîn ku eger guherandinê ku AKP'ê di yasayan de kiribû tunebûna pirsgirêk îro wiha nedihat axaftin û wiha dom kir: "Pirsgirêk êdî bê tirs û vekirî tê guftûgokirin, Kurd weke berê nayên înkarkirin, derfetên siyaseta sivîl zêde bûn, ev tişt gelek girîng in.".


Dengîr Fîrat

> Armanca trafîka dîplomasiyê bi welatên cîran re û dirêjkirina tezkereyê ne tasfiye ye

Firat biryara PKK'ê ya bê çalaktiyê jî wek gaveke "erênî le kêm" nirxand û wiha got: "Tirkiye kengê têkeve nav pêvajoya aştiyê çalakiyên provokatîf pêk tên. PKK agirbestê jî îlan bike, lê heta ku li serê çiya bimîne, wê bibe sedemê provokasyonan. Bûyerek çêdibe, kes nizane kî kiriye, ronîkirina wê demeke dirêj digire. Ji bo vê jî divê PKK agirbestê dirêj bike û hêzên xwe bikişîne derveyî sînor. Di vê çaxê de bi çekan ti maf nayên bidestxistin. Eger çekan berdin wê şert û mercên wan zêdebibe ku karibin tevlî siyaseta demokratîk bibin."

Firat ragihand ku armanca trafîka dîplomasiyê ya ku bi welatên cîran re tê kirin jî ne tasfiye ye û dirêjkirina tezkereyê jî helwesteke sembolîk e û hikûmet nafikire ku tiştek wiha pêkbîne. Firat wiha axifî: "Tezkere sala borî jî hebû, lê operasyon pêknehatin. Biryara operasyonê êdî tenê di destê hikûmetê de ye. Ti hêzeke din nikare li ser navê hikûmetê tiştek bike. Herwiha, weke hemû cîranan em bi Herêma Kurdistanê re jî danûstandinan didomînin."

Firat, di derbarê daxuyaniyê Ocalan de, ku gotibû, "dibe ku xwe paş ve bikişîne û şer dîsa dest pê bike" wiha axifî: "PKK û Ocalan pirî caran wek şantajê dibêjin ku wê agirbest bi dawî bibe û şer dest pê bike, lê ev yek êdî demode bûye. Dibêjin diyalog û hevdîtin. Ez vê yekê wek axaftinên li polîgonê tên kirin, dibînim. Divê em pirsgirêkên xwe ne li polîgonan, li cihên bê deng û aram biaxivin."

### Kaplan: Hikûmet li dû tasfiyekirinê ye

Parlamenterê BDP'ê yê Şirnexê Hasip Kaplan jî ragihand ku hikûmetê dema bi wan re hevdîtin kiriye behsa çareseriya demokratîk kiriye, lê pratîka wê ne wisa ye. Kaplan da zanîn armanca hikûmetê ew e ku bi alîkariya navnetewî dixwaze tevgera gelê Kurd hilweşîne û wiha got: "Li aliyekî dibêjin emê yên li çiya ne, daxînin jêr, li aliyê din du hezar mirovên ku li jêr siyaseta sivîl dimeşînin di bin navê 'Operasyona KCK'ê' de digirin û dixin girtîgehê. Bendava ji sedî 10 ya ku li pêşiya Kurdan ava kirine da ku nekevin parlamentoyê, danaxînin. Operasyonên leşkerî didomin. Hikûmet li Tehran, Şam, Bexda, Washington û Brûkselê bi helwesta hilweşandina tevgera Kurd dîplomasiyê dike. Ev jî baweriyê dişkêne."

Kaplan, ji bo ku bawerî dîsa çêbibe wiha got: "Operasyonên leşkerî û sivîl divê bi lez bên rawestandin. Divê Serokwezîr an Serokkomar bi helwesteke fermî derbarê mafê perwerda zimanê zikmakî de, daxistina bendava hilbijartinê de, guherandina di Yasaya Tekoşîna Dijî Terorê de û ji bi pirsgirêka Kurd sozê çareseriyeke demokratîk bide, bes e."



# Li Sûriyê 3 milyon kesên birçî hene

**Dilbixwîn Dara**

Sûriye yek ji wan welatan e ku birçîbûn û feqîrî lê zêde ye û her ku diçe zêdetir jî dibe. Rayedarên Sûriyê vê yekê red dikin û dibêjin ti pirsgirêka wan a bêkarî û feqîriyê tune ye, lê îstatîstîk destnîşan dikin ku rêjeya birçîbûn, bêkarî û feqîriyê gelek bilind e. Rayedarên Sûriyê dema ku dibêjin ti pirsgirêka wan bi bêkarî û feqîriyê re tune ye, ew tenê aliyê dewlemend ê wî welatî dibînin û çavên xwe ji aliyê din re digirin.

Aborîzan destnîşan dikin ku ji 5 salan û vir de hejmara bêkar û feqîran ber bi zêdebûnê ve çû ye. Rayedar çiqas ji vê rastiyê birevin jî ew realiteyek e û divê bê dîtin, ev nêrîna pisporsên aborî ye yên ku ji nêzîk ve rewşa Sûriyê ya aborî dişopînin.

Sûriyê heta niha jî ne xwediyê programeke aborî ya cidî ye ku bikaribe rewşê biguherîne. Dezgehên ser bi Neteweyên Yekbûyî ve jî rastiya li jor dibînin. Ji bo ji nêzîk şopandina vê rewşê, Nûnerê Taybetî yê NY di warê Mafê Xwarin de Olivie Dschoter, di dema serdana xwe ya Şamê de diyar kir ku ew ji rewşa li meydanê ne razî ye û raporek jî pêşkêşî hikûmetê kir.

Dschoter di rapora xwe de ku radestî Neteweyên Yekbûyî jî kir, hejmara kesên birçî heta 3 milyon kes destnîşan kir û diyar kir ku ewlekariya xwarin û vexwarinê ya wan kesan tune ye. Li gor raporeke Programa Geşepêdanê ya Neteweyên Yekbûyî di navbera salên 2003-2004'an de, wê demê hejmara feqîr û birçiyan 1 milyon kes bû.

Li aliyê din, ji 4 salan û vir de, li Sûriyê hişkî jî bûye sedema ku êdî weke berê şandinî nikaribe di geşepêdanan Sûriyê de rola xwe bilîze. Bi taybetî ji bo Kurdan, herêmên li Rojavayê Kurdistanê, hatina wan li ser çandiniyê ye, nebûna baranê û hişkayî, derbeyeke mezin li jiyana wan a aborî dixîne.

Dschoter di rapora xwe de dibêje di navbera salên 2007-2008'an de hişkesaliyeke xerab hebû, bi taybetî li herêmên Kurdan ên weke Hesîçe û Qamişlo, ji ber vê yekê hejmareke mezin a Kurdan ji bo peydakirina kar koçkirin bajarên mezin ên weke Şam û Helebê, herwiha li Libnan û welatên Ewrûpayî bûn penaber. Bêguman ji bilî pirsgirêkên siyasî, rewşa aborî jî sedemeke girîng bû ku beşeke Kurdan ji bo peydakirina xwarinê berê xwe bidin Ewrûpa û bibin penaber û êşeke din ji bo wan dest pê bike.

Li ber deriyê Parlamena Kurdistanê ketine grevê

# Penaberên Kampa Muqublê dixwazin li Hewlêrê bicîh bibin

**Ebdila Nihêlî** Duhok

Mihemed Seîd nekarî tevî penaberên Kempa Muqublê beşdarî meşa nerazîbûnê bibe ku li hember Parlemana Kurdistanê lidar xistine, ji ber ku rewşa tendirustiya hevjîna wî xerab bû. Mihemd got: "beriya ku hevalên me biçin Hewlêrê, me pir hewl da Parêzgarê Duhokê bibînin û pirsên rûniştvanên kempê jê re behs bikin, lê rê nedan, lewra me biryar da em biçin ber deriyê Parlamena Kurdistanê."

6 mehan piştî komkujiya bajarê Qamîşlo ya li 12'î Adar a 2004'an, nêzîkî 87 malbatên Kurd ên Rojavayê Kurdistanê rû li Herêma Kurdistanê kirin û li kempa Muqublê ya li Qezaya Sêmêl ser bi Parêzgeha Duhokê bicî bûn.

Şerê ku sala 2004'an di stadyoma Qamîşlo di navbera alîgirên Tîma Cîhad a Kurdî û Tîma El-Fitwe ya bajarê Dêrzur ê erebî pêk hat, bûyerên mezintir li pey xwe anî, li bêtiriya bajarên Kurdistanê serhildan çêbû û di encam de hejmareke hevwelatiyên Kurd hatin kuştin û birîndarkirin, beşek jî ji tirsa girtin û îşkencekirinê reviyan û hinek ji wan hatin Herêma Kurdistanê.

Rewşa van penaberan pir xerab e û heta niha jî di çadir û jorên nexweş de dijîn, lewra wan roja 4'î Cotmah a 2010'an xwenîşandanek li ber deriyê Parlamena Kurdistanê lidarxistin, piştre dest dan girevê û dibêjin "heta daxwaziyên me neyên pejirandin, em dest ji girevê bernadin." Mihemed Seîd herwiha got: "nebûna nasname û cihê nîştecihbûnê pirsa me ya here sereke ye." Lê Mihemed dibêje ku wan jî wek hevwelatiyên Îraqî forma xwarinê heye, zarokên wan di xwendingehên Herêma Kurdistanê de "bi zimanê şîrîn ê Kurdî dixwînin."



87 malbatên penaberên Kurdên Rojava li Kempa Muqublê dijîn

Herçend Nûnerên Komisyona Bilind a Penaberan a ser bi Rêxistina Netewên Yekbûyî (UNHCR) li piraniya cihên ku penaber lê hene, hene, lê penaberên kempa Muqublê saziya UNHCR'ê rexne dikin, ji ber ku negihiştine wan.

Nezîr Heso (55) rexne li NY'ê digire û dibêje: "ev nêzîkî 2 sal e ti saziyeke sivîl û NY'ê jî serdana me nekirine, niha ez li Sûriyê qaçax im û sezayê darvekirinê bi ser min de hatiye sepandin, hez dikim bibim xwedî nasname û bikarim ji bo herdem li Başûrê Kurdistanê bimîn im."

Derbarê pêwendiya wan digel xelkê Herêma Kurdistanê, Nezîr daxuyand: "pewendiyên me ligel xelkê vir pir baş e, heta niha 3 keçên me li vir digel xortên Başûrê Kurdistanê zewicîne, 3 keçên wan jî digel xortên me hevjînî pêk anîne."

Ew penaberên çûne Hewlêrê, çend demjimêran li ber deriyê Parlamen a Kurdistanê sekinîn, lê ti parlamentarek nehat û guhdarî wan nekir, nûnerekê xwenîşanderan ragihand: "ger daxwaziyên me neyên cîbicîkirin em ê kempa xwe bînin ber deriyê parlamenê.

### "Ger bersiva me neyê dayîn, em ê kempê bînin ber deriyê Parlamenê"

Nûnerê meşvanan, Genco Seîd Silêman, ji Rûdaw re diyar kir: "zêdeyî 6 sal e gişt malbatên kempa Muqublê ku hejmara wan dighîje 65 malbatan, di bin konan de dijîn û ji pêwîstiyên herî sade bê par in. Genco bi nerehetî got "tevî ku em li ser Kurdûbnê derbiderbûna, lê niha jî berpirsên Hikûmeta Kurdistanê weke Hikûmeta Sûriyê bi cavê biyanî li me di meyizin."

Parlamenterê Firaksiyona Goran û Endamê Lîjneya Yasayî li Parlamen a Kurdistanê, Kardo Mihemed, li ser alîkarîkirina serokatiya parlamen û firaksiyonan ligel xwenîşanderên Kurd ên Rojavayê Kurdistanê got: "em ne bê helwest in, lê ger wan daxwaza xwe pêşkeşê lîsteya me kiriban, me wê pirsa wan şopandiba, lê daxwaznameya wan ji bo Serokatiya Parlamenê hatiye pêşkeşkirin."

Cîgirê Parêzgarê Duhokê, Gorgîs Şilêmon, bêagehdarbûna xwe ji daxwaza wan ya ji bo dîtina Parêzgar diyar kir û got: "em ne agehdar in û em bi tevahî di xizmeta wan de ne." Cîgirê Parêzgar eşkere kir ku 4 sal beriya niha 88 xanî ji bo van penabaran çêkirine, "lê paşî hejmareke zêde ya penaberên di nav avahiyên Duhok û Zaxo de, rû li kempê kirin ji bo ku ji wan re jî xanî bên çêkirin."

Rêvebirê Penaber û Lêqewmiyan li Duhokê, Mihemed Ebdulla, derbarê hejmara penaberên Rojavayê Kurdistanê got niha 871 malbatên Rojavayê Kurdistanê li Herêma Kurdistanê dijîn ku 87 malbatên wan li Kempa Muqublê ne û 92 malbat jî di Dever a Dumîs in. Wî herwiha got: "her saziyeke biyanî tê cem me, em dişînin cem wan penaberan."

Penaberên girevgirtî di daxuyaniyekê de ku pêşkeşê Parlamen a Kurdistanê kirine, daxwaz kirin e: "dîtina çareseriyeke yasayî ji bo pirsên wan, dabînkirina cihê bicihbûnê li bajarê Hewlêrê, qebûlkirina xwendekaran li zanîngehan li gor maf û yasayên taybet ên karûbarên penaberan bê kirin, dabînkirina xizmetên tendirustî."

Li zanîngehên Amerîkî ji bo xwendekarên Kurd şansek mezin peyda bûye

# Li 6 zanîngehan 500 xwendekar tên wergirtin

**Hewlêr (Rûdaw) -** Yekîtiya Qutabiyên Kurdistanê bi hevkariya Komeleya Dostaniya Kurd û Amerîka, ji bo xwendekarên Kurdistanê di 6 zanîngehên Amerîka de 500 kursiyên xwendinê dabîn dike. Sekreterê Yekitiya Qutabiyan ragihand ku hemû xwendekar bêyî liberçavgirtina nerînên siyasî dikarin ji pirojeyê sûd bigrin.

Ji bo xwendekarên Başûrê Kurdistanê li welatên Ewrûpa û Amerîka her diçe derfet zêde dibin. Niha çendîn xwendekar li derveyî welat li ser xerca xwe yan jî li ser xerca Hikûmetê xwendina xwe didomînin, ji bilî vê di çarçoveya projeya Şiyansaziya Mirovî de biryar e 1300 xwendekar ji bo derveyî welat bên şandin. Yekîtiya Qutabiyên Kurdistanê jî 25 xwendekar şandine derveyî welat. Herwiha Yekîtiya Qutabiyan ji bo bidawîanîna xwendina bilind 500 xwendekarên din dişîne zankoyên Amerîkayê.

Serokê Civaka Dostaniya Kurd û Amerîkî, Tehsîn Ertoşî, derbarê pirojeya nû de ji Rûdaw re got: "me ji bo avakirina projeyekê bi armanca hevkarîkirina Herêma Kurdistanê digel hejmareke Kurd û Amerîkiyan çendîn civîn li dar xist. Herwiha hevwelatiyek Amerîkî ji aliyê me ve bo Kurdistanê hate bangkirin û wî ji bo têkiliyên digel zanîngehên Amerîkî nîşan da ku karibe ji bo xwendekarên Kurdistanê mafê xwandinê bistîne." Niha 5 zanîngehên Amerîkî wek San Diago, Goerge Mason, California Bisniess û Nashvillid, ji bo wergirtina 500 xwendekarên Kurd amadebûna xwe nîşan dane.

Sekreterê Yekîtiya Qutabiyên Kurdistanê, Îrfan Mihemed, ku ji rêya Civata Dostaniya Kurd û Amerîkî ve ji bo avakirina pêwendiyan digel zanîngehên Amerîkî hatibû vexwandin ji Rûdaw re got: "em dixwazin ji bo xwendekarên Kurdistanê li derveyî welat zêde kursiyan bidestbixin, 6 zanîngehan amadebûna xwe ji bo wergirtina 500 xwendekarên Kurd nîşan dan." Xwendin li Amerîka bi pere ye, lê ji bo kesên ku ji welatek din diçin Amerîka, xerca xwendinê zêdetir e. Tehsîn Ertoşî dibêje: "wan zanîngehan soz dane me ji bo xwendekarên Kurdistanê nîvê mesrefa xwendinê nestînin, ew jî wek alîkariyek e ji bo Kurdistanê." Sekreterê Yekîtiya Qutabiyan eşkere kir ku di sefera xwe ya ji bo Amerîkayê serdana Wezareta Derve jî kiriye: "me digel berpirsa vîzeyên xwendekaran li Wezareta Derve ya Amerîka Xatûna Pêl jî qise kir, wê soz da ku vîzeyê curê F1 bide xwendekarên Kurdistanî ku xwendekar ji rêya wê dikare lîse, master û duktoraya xwe bistîne."

Serokê Civata Dostaniya Kurd û Amerîkî bawer dike ew perê ku ji xwendekaran tê wergirtin zêde ye: "Li Ameîka zanîngeh bi pere ne, ev jî pirsek bazirganî ye, tu li hember hinek pere zaniyariyên baş bidest dixî. Di civîneke zanîngehê de ji me re diyarkirin ku em çiqas xwendekaran zêde bişînin, wê ji me re erzantir hesêb bikin."

Cîgirê Serokê Civata Dostaniya Kurd û Amerîk, Husên Hacî, ji serkeftina projeyê pir geşbîn e: "asta zanîngehan pir baş e û ger hikûmet hevkariya projê bike, bawer dikim ji sedî 80'ê şansê serkeftina pirojê heye." Derbarê dema rêketina xwendekaran Îrfan Mihemed eşkere got em ê qonax bi qonax wan bişînin, ew pêşbînî dike piştî 20 rojên din yekemîn grûpa xwendekaran ji bo Amerîka bên şandin.

Almanya akibeta rojnamevanan pirsî, ji bo Ebdî bêdeng e

# Almanya ji bo hevwelatiyên xwe cotstandardiyê dike



Îsmaîl Ebdî

Sîrwan H. Berko Berlîn

Hefteya borî piştî ku nûçeya girtina du rojnamevanên Alman li Îranê belav bû, Wezîrê Derve yê Alman Guido Westerwelle û piştî wî Serokwezîr Angela Merkel bi tundî girtina welatiyên xwe şermezar kirin û ji Îranê doza serbestberdana bilez a herdu rojnamevanan kirin. Lê tevî ku ev du meh in Îsmaîl Ebdî li Sûriyê di zindanê de ye, ta niha ne ji Westerwelle ne jî ji Merkel tiştek nehatiye bihîstin. Çendîn çalakvanê mafê mirovan ê esil Kurd welatiyê Sûriyê ye, lê belê wî li Almanyayê nasnameya Alman bi dest xistiye û li gor qanûnan ew hevwelatiyê Almanyayê ye û ti cudabûn di navbera wî û herdu rojnamevanên Alman li Îranê tune ye. Lê ji bo Wezareta Derve ya Almanya cudabûnek heye. Berpirsekî di wezaretê de ji Rûdawê re eşkere kir ku ji ber Îsmaîl Ebdî berî bibe welatiyê Almanya welatiyê Sûriyê ye, "Di warê mafên gelan de ji mafê Sûriyê ye ku welatiyên xwe li gor qanûnên xwe dad bike". Lê dîsa jî wezaret ji aliyê xwe ve di hewldanên eşkerekirina çarenivîsa welatiyê xwe Îsmaîl Ebdî de ye.

Ev helwesta Hikûmeta Alman bû sedema nerazîbûneke mezin di nav rêxistinên mafên mirovan de li Almanyayê. Piştî ku malpera KurdWatch ragihand ku Îsmaîl Ebdî li Şamê di zindana Edrayê de ye û bi "belavkirina nûçeyê çewt" tê tewanbarkirin, ku mirov li Sûriyê ji bo vê yekê dikare ta sê salan bikeve zindanê, Encûmena Penaberan li Herêma Schleswig-Holstein û Partiya Keskan nerazîbûna xwe li hember wezareta xwe ya derve anîn zimên. Ew eşkere dikin ku ew qet nikarin fêm bikin, bê çawa Hikûmeta Alman nizane Îsmaîl Ebdî di çi rewşê de ye, lê di heman demê de rêxistineke mafên mirovan di rêya parêzeran re xwe gihandiye melefê Îsmaîl Ebdî. Keça wî Fereh, xemgîniya xwe ji bo bêçalakbûna Wezareta Derve ya Alman anî zimên. Ew dibêje ku divê mirov ji xwe bipirse, "ka Hikûmeta Alman têra xwe ji bo bavê min hewildanan dike yan na". Malbata Ebdî di nameyekê de ji bo Angela Merkel doza piştgiriya Hikûmeta Alman ji bo serbestberdana Îsmaîl Ebdî kir. Volker Beck ji Partiya Keskan helwesta hikûmeta xwe fêm nake û wê rexne dike. Beck diyar dike ku di navbera Almanya û Sûriyê de gelek danûstandin pêk tên: "Divê doza Ebdî di asta herî bilind de bê behskirin, ji ber ku ew welatiyek Almanya ye.

Divê hikûmet guh bide vê dozê, ne girîng e kuEbdî welatiyê Sûrî ye yan na." Wezareta Derve ya Almanya ji aliyê xwe ve ragihand ku ew bi rêya fermî hewil dide ku agahiyan li ser rewşa Îsmaîl Ebdî bi dest bixîne. Kesên ku xwe mijûlî pirsên girêdayî Sûriyê dikin, dibêjin ku Almanya naxwaze zêde zextê li Sûriyê bike, mîna ku ligel Îranê dike, ji ber ku Almanya hêvî dike ku bikaribe bihêle ku rêjîma Sûriyê zextê li ser Hizbullah û Hamas pêk bîne, da ku beşdarî prosesa aşitiyê li Rojhilata Navîn bibin. Berî du hefteyan Serokê Komîteya Derve ya Parlamentoya Alman Ruprecht Polenz, eşkere kir ku dem hatiye ku Hikûmeta Alman Serokê Sûriyê Beşar Esad ji bo serdaneke fermî vexwendî Almanyayê bike, lê Serokwezîra Almanyayê Angela Merkel ta niha li dijî serdana Serokê Sûriyê ye.

Îsmaîl Ebdî, ku çalakvanek naskirî yê mafê mirovan e û ji sala 1997'ê ve ligel malbata xwe li bajarê Kiel dijî, di 23'ê Tebaxa îsal de li balafirgeha Helebê hatibû girtin.

# Di Festîvala Navnetewî ya Çandê de rengên Kurdî jî hebûn



**Berlîn ( Rûdaw) –** Li paytexta Almanya Berlînê Festîvala Navneteyî ya Çandê hat li darxistin. Kurd jî, bi rengên xwe tevlî festîvalê bûn û stranên xwe gotin û govend kişandin.

Înternasyonale Kultur Fest (Festîvala Navnetewî ya Çandê) bi organîzeya 38 partî û saziyan dawiya vê heftê li Berlînê bi tevlîbûna hezaran kesan hat li darxistin. Di rêveberiya festîvalê de saziya Kurd, YEK-KOM jî cih girt. Di festîvala ku şemiya borî hat li darxistin de, cûrên cand û mûzîkên gelerî hatin pêşkêşkirin. Bernameya festîvalê bi almanî, kurdî, îngîlîzî, fransî, îspanyolî û tirkî hat pêşkêşkirin. Peyam jî bi van zimanan hatin dayîn û helbestên Pablo Neruda û Nazim Hîkmet hatin xwendin. Rêvebirên saziyên biyanî li vir axivîn û bê edeletiya ku li cîhane tê kirin, rexne kirin. Rêvebira Kurd Gulaysan Korkmaz Karaaslan jî di axaftina xwe de behsa rewşa Kurdan kir. Korkmaz Karaaslan got ku Kurdên li Almanya dijîn xwediyê pirsgirêkên mezin in. „Kurd li Tirkiyê, Sûriyê û Îranê bi nasname ya xwe nayên naskirin. Ev rewş li vir jî dimeşe. Dewleta Alman ji bo têkiliyên xwe yê bi Tirkiyê re xirab neke zor û zextê li ser saziyên Kurd dimeşîne û Kurdan wek Kurd qebul nakê. Lê wan bi nasnameya Ereb, Tirk an jî Faris qebul dike." Piştî axaftina Karaaslan, hozan Hîkmed û hunermendê hîp-pop a kurdî Muharem derketin ser dikê û stranên xwe gotin û cîwanên Kurd û biyanî govend girtin û lîstin.


Cengiz Çandar xelata KOMKAR'ê ji bo xizmeta di warê ziman û edebiyata kurdî de pêşkeşî Kemal Burkay kir. Heman xelat ji aliyê Eskerê Boyik pêşkeşî Yilmaz Çamlîbel jî hat kirin.

# Cengîz Çandar jî mêvanê Pêşangeha Pirtûkên Kurdî bû

Seyîdxan Kurij Bottrop

Pêşangeha Pirtûkên Kurdî ya 4. ku ji aliyê Konfederasyona Komeleyên Kurdistan li Almanya (KOMKAR e.u.) hatibû amade kirin, di rojên 15, 16 û 17'ê Cotmehê de bi beşdarbûna gelek nivîskar û rewşenbîran hat lidarxistin.

Pêşangehê bi axafina endamê komeleya Hevaltî Fetah Timar destpêkir. Serokê KOMKAR e.u Kovan Amedî jî di gotara xwe de anî ziman ku ew dixwazin li Ewrûpayê xelkê Kurd bi pirtûkan re bidin nasandin û wiha dom kir: "Em dixwazin hezkirina pirtûkan di nav Kurdan de belav bikin, civata Kurd teşwîqê xwendina pirtûkan bikin, di navbera nivîskar û xwendevanan de diyalogeke yekser pêk bînin." Dîsa di heman êvarê de berpirsiyarê karên ola Êzidîtiyê ya Wezareta Karên Ewqaf û Olî ya Hikûmeta Herêma Kurdistanê Xeyrî Bozanî û endama polîtburoya Partiya Komunîsta Kurdistan Pexşan Zengene ji gotarên kurt pêşkeş kirin. Berpirsiyarê Asuriyan li Wezareta Karên Ewqaf û Olî ya Hikûmeta Herêma Kurdistanê Xalit Cemal wek mêvan li vir amade bûn.

Di çarçova bernameya pêşengehê de roja şemiyê Xelîl Duhokî li ser ziman û edebiyata kurdî li Başûrê Kurdîstanê û pêwendiya kurmancî û soranî, polîtîkaya ziman a Hikûmeta Herêma Kurdîstanê axifî. Duhokî rexne li rewşenbîrên soranîaxêf girt ku ew kurmancî naxwînin û haya wan ji edebiyata kurmancî nîne.

**Cengîz Çandar: Medya Tirk zimanê dewletê bikar tîne**

Kemal Burkay li ser dîroka wêjeya Kurd û zimanê kurdî gotarek pêşkeş kir. Burkay ji dema Medan heta îro li ser dîroka wêjeya Kurd agahdarî da beşdaran. Burkay di dawiya axaftina xwe de daxuyand ku pirsgirêka Kurd ne tenê pirsgirêka ziman e, "Ew pirsgirêkeke siyasî ye, ango divê Kurd li ser axa xwe desthilatdar bin. Modela ku îro li Îraqê heye, divê li Tirkiyê jî pêk pê ku pirsgirêka Kurd çareser bibe."

Di heman rojê de rojnamewanê Tirk Cengîz Çandar li ser "Di Pirsgirêka Kurd de Rola Medyaya Kurd" gotarek pêşkeş kir. Çandar kêfxweşiya xwe anî ziman ku piştî 40 salan dostê xwe Kemal Burkay li vir dîtiye û pê re sohbet kiriye. Çandar li ser medya Tirk jî axifî: "Medyaya navendî ya Tirk hertim zimanê dewletê bikaraniye, dewlet jî di bin siya artêşê de ye. Ji ber wê zimanê medyaya Tirk zimanek leşkerî ye. Lê hertim medyaya alternatîf jî hebû. Mînak Rojnameya Taraf." Çandar li ser rewşa siyasî ya Tirkiyê jî axifî: "Niha li Tirkiyê ji bo perwerda zimanê dayikê rê vebûye, piraniya rewşenbîrên Tirk jî êdî wê qebul dikin, lê serê serokwezîr hîn ne zelal e. Divê em zor bidin dewletê da ku wê pêkbîne."

Roja yekşemê Yilmaz Çamlibel, Yilmaz Odabaşi, Yelda Karataş, Edîp Çelkî, Hesûn Cewar, Hoşeng Broka, Zedo Mero Baedrî û Ebdulah Cindî li ser mijarên cûrbecur gotar û helbestên xwe pêşkeş kirin. Herwiha nivîskar A. Balî, Jan Dost, Ronî Alasor û Zeynel Abîdin jî pirtûkên xwe îmze kirin.

Weşanxane û pirtûkxaneyên wek Ararat, Nûbihar, Han, Deng, Veng, Oz-Ge, GfbV, KOMKAR, Roja Nû û Firat beşdarê pêşengehê bûn.

# "Ji bilî serxwebûna Kurdan, ti rêyeke din li pêşiya me nîne"



Wezîrê Rewşenbîrî yê Kabîneya borî ya Hikûmeta Herêma Kurdistanê Felekedîn Kakeyî, çendîn sal e endamekî berçav ê serokayetiya PDK'ê bû, niha jî wek rayedarekî PDK'ê nêzîkî bûyerên siyasî dibe. Kakeyî ku pir caran di rojên herî bêhêvî de, di rojên herî dijwar ê şerê navxwe de, bi gotarên xwe geşbînî pêşan da, di vê hevpeyvîna ligel Rûdawê de rexneyên tund li bêhelwêstiya Kurdan derheqê paşxistina serjimêriya giştî bo cara sêyem ji aliyê Hikûmeta Bexda digire û dibêje bi vî awayê niha mijara diyarkirina sînorên Kurdistan û Kerkûkê di qonaxa jidestçûnê de ye.

**Rûdaw: Malikiyê ku niha pêdiviya wî bi dengê Kurdan heye ev serjimêrî paşxist. Elawî jî ku digot çareseriya pirsa Kerkûkê di destê me de ye, aliyên îtîlafa wî wiha kirin ku serjimêrî neyê kirin.**

**Felekedîn Kakeyî:** Ji xwe pirsgirêk ew e ku herdu jî di meleseya paşxistina serjimêriyê de, ger bi hev re rûneniştibin jî da li ser lihev bikin, lê herdu jî di pratîkê de li ser paşxistina serjimêriyê hemfikir bûn.

**Li gor we petrol wê bibe faktorek ku Kurdistan berbi serxwebûnê here, wek Tîmora Rojhilat ku ji sedî 10'ê petrola xwe da Awustralya ji bo ku bigîhe serxwebûnê? Yan jî wek Başûrê Sûdanê ku berbi serxwebûnê diçe. Bi dîtina we, Başûrê Kurdistanê jî ku di dema hilbijartinên 2006'an de di referandûmeke ne fermî de ji sedî 99'an dengê xwe dan serxwebûnê, wê berbi serxwebûnê ve biçe?**

Ti rêya din li pêşiya me nîne. Li cem min, ecêb e ku ligel hilbijartina sala 2006'an me referandûmek kir, nizanim me çima kir? Dema ji sedî 99'ê milletekî di referandûmê de dengê xwe bide serxwebûnê, ji ber çi xwe jê bêdeng bikin û behsa wê nekin. Me ev referandûm ligel hilbijartineke fermî kir. Diviyabû kar li ser encamên vê referandûmê bihata kirin. Ev rêjeya zêde ku dengên xwe dan serxwebûnê ji ber çi daxwaz nekirin kar li ser bê kirin û çima kirin propaganda? Eslen ev guneheke mezin e ku pirsa çarenûsa gelekî bibe propaganda.

## Di 2003'an de firsetek mezin ji dest çû

**Zemîna wêya heye ku Başûrê Kurdistanê bibe wek Başûrê Sûdanê?**

Erê. Başûrê Sûdanê jî ligel me dest bi xebatê kir, her çiqasî xebata çekdarî ya wan di 1953'an de destpê kir, lê xebata wan a siyasî ligel me destpê kir. [...] Ji sala 1972'an ve çavdêriya xebata Başûrê Sûdanê dikim. Niha pirsa wan gihaye xaleke zêde nazik û kirina referandûmê. Herwiha serokê îdareya Başûrê Sûdanê Silvakir bi dengekî bilind dibêje deng didim cudabûnê, yanî ey millet deng bidin cudabûnê! Serokê Sûdanê Umer Beşîr ji ber sezayên navdewletî ji herdu destên xwe hatiye girêdan. Amerîka, YE û NY piştîvaniya Başûrê Sûdanê dikin ku bibe dewleteke serbixwe. Ev pirseke zêde girîng e ku Sûdan yekem dewleta Ereb û Îslamî ye ku herêmek jê cuda dibe. Ev ji me re motîf, rêxweşker û mînake jî û tê wateya ku cudabûn ji van welatan – bi xweşî yan nexweşî – jî tiştekî mimkun e. Wan jî cudabûna xwe bi zorê ferz kir, me jî tiştê bidest xist di 1970'ê de bi şer ferz kir û di 1991'ê de jî. Ger piştî ku 1991'ê Saddam hilweşiya û rewşa niha li Herêma Kurdistanê nebûya, ewên îro li Bexda ne wê demê bihata ser îqtîdarê, tiştek qebûl nedikirin. Lê gava Saddam hilweşiya li vir de-factoyek hebû. Di destûrê de jî heye ku em li statuya Herêma Kurdistanê mikur tên. Ger me statuya Kurdistanê bilindtir jî danîba, wê derbas bibûye. Berê xwe bide mînaka projeya destûra Herêma Kurdistanê. Ev proje di 1992'an de hat Parlamentoya Kurdistanê, me dixwest derbas bikin, hinek dijî derketin û hinekan got zû ye. Ger wê demê me destûra xwe pesend bikira, wê piştî 2003'an biketa nav destûra Îraqê û niha rastî pirsgirêkan nedihatin. Me dikarî di wê destûrê de gelek tiştan cihgîr bikin, wek sînorê Herêma Kurdistanê, Kerkûk jî di nav de. Lê em qîmeta demê nizanin. Kurd girîngiya demê nizanin û derfeta ku îro hate pêş dibe sibe careke din çê nebe. Niha derfeteke baş li ber Kurdan heye, hêvîdar im hikûmet pêk neyê, da pirsên din derkevin, qirîz mezintir bibin, da Kurd bikarin biaxivin. Mebesta min ne ew e ku destkefta me di pirsgirêka xelkê din de ye, lê niha derket ku ti hêviyek di van şert û mercan de tune. Serjimêrî çarenûsî ye û wek referandûma Başûrê Sûdanê ye. Li Başûrê Sûdanê xwe amade kirine ger referandum neyê kirin ew ê şer bikin. Lê li cem me serjimêrî hat paşxistin, tenê wek nûçeyekê hat belavkirin û bi awayekî zêde normal hat redkirin.

**Diviyabû helwêsta Kurdan tundtir bûna?**

Helwêsta me bi carekê nebû. [...] Lê me wek nûçeyeke rojnamegerî ya sade weşand, wek ku bê gotin li Awustiralyayê kangûruyek ket binî otomobîlê, tevî ku têkiliya serjimêriyê bi maddeya 140'ê û sînorê Herêma Kurdistanê re heye. Li Başûrê Kurdistanê ji her tiştî girîngtir, sînorê Kurdistanê ye. Ev sînor, sînorê hemû Kurdistanê ye, ne yê min û te ye û ne yê Kerkûk û Silêmaniyê ye û ne yê PDK'ê û YNK'ê ye jî, lê sînorê Kurdistana Mezin e, sînorê Bakur û Rojhilatê Kurdistanê ye, çawa jê bêdeng bin? Maddeya 140'ê çi ye? Naveroka wê çi ye? Naveroka wê ew e ku sînorê xwe destnîşan bikin. Divê bê îspatkirin ev navçe Kurdî ne yan ne Kurdî ne. Da bê yekalîkirin ku Kurdistan heta ku ye û sînorê te kîjan e, bê sînor nikarî îdare bikî. Li cîhanê sînorê her parêzgehekê jî diyar e, qeza û nahiye jî divê sînorên wan diyar bin. Niha pêkhateyeke me heye, me navê wê kiriye federalî, lê sînorê wê ne diyar e, li ba min diyar e, lê beramberê min qebûl nekiriye. Ger ev pirsgirêk wiha bidome, wê bibe sedemê derketina şerekî mezin, ger em niha wê bi hêz li ber çavan ranexin. Ji vê bêhelwêstiya li ser nekirina serjimêriyê bêhêvî bûm. Roja ku hat behskirin serjimêrî tê paşxistin, min got niha wê hizbek bi tundî bersivê bide, rojnameyek tiştekî dinivîse, kanalek, bajarek, rêxistinek, lê kesî bersiv neda.

## Bêhelwêstiya Kurdan bê tahm bû

**Serokatiya Herêma Kurdistanê û Hikûmeta Herêma Kurdistanê jî?**

Ti kesî bersiv neda, bi xwe jî tawanbar im ku min tiştek nekir. Êdî xelk çawa dibe li tiştekî wiha bêdeng bin ku biraderek li parêzgehekê [mebest Parêzgarê Mûsilê Esil Nûceyfî ye] bikaribe proseseke wiha girîng paşbixe, lê bêguman ew ne bi tenê ye. Ger fraksiyonên mezin, wek fraksiyona Malikî û Elawî, ne li pişt wî bûna, yanî fraksiyonên Sunnî û Şîîeyan, wî nikare wiha bike.

## Bi awayekî yasayî Kerkûkê dibin

**Bi baweriya we, ev bêdengî tawan bû?**

Tawaneke pir mezin e. Bi rastî tiştekî bê wate ye û dikarim bêjim bê tahm e. Helwêsta me Kurdan derbarê mafên me, zêde bê tahm e. Dibe ev hevokeke pir giran be, lê helwêsta me pir kelevajî ye û bê wate ye derbarê tiştekî ku çarenûsa me diyar dike. Fam nakim niha em ji ber çi xebat dikin? Gelo bo wêya xebat dikin kî bibe wezîr, an li Bexda kî kîjan postê werdigire? Naxêr, xebata me ji bo pirsa Kurd e. Ger wiha be, di heyama paşayetî, Ebdulkerîm Qasim û Saddam Husên de jî wezîrên Kurd hebûn. Pirsa me newî ye û niha di sînorê Kurdistanê de civiyaye, ger na ti pirseke me ya din nemaye, parlamento û hikûmeta me hene, pêşmergên me hene, xelk me nas dike, hilberîna me heye, firokexaneyên me hene, lê tiştê me yê herî girîng ku sînorekî naskirî nîne.

**Niha 10 hezar malbatên din hatine Kerkûkê. Serokê Dezgeha Navendî ya Serjimêriya Îraqê Mehdî Elaq di kanala Sumeriye de got "Erebên ku niha li Kerkûk ne, di serjimêriyê de li ser Kerkûkê tên tomarkirin, tevî ku jê dipirsin ji ku hatiye".**

Yên li Bexdayê serdest bin, kî dibe bila bibe, Elawî yan Malikî be, anîna Ereban berdewam dikin. Berê ew anîne û wê bînin jî û wan diçesipînin. Felsefeya hizrî ya siyasî ya Ereban li Îraqê çi ye? Berê xwe bide Başûrê Sûdanê, Hikûmeta Xertûmê pir hewl da referandumê paş bixe, lê başûr peymanek ligel Xertûmê mor kiribû ku gelek aliyên Afrîqî, Erebî, Ewrûpî û Amerîkî tê de şahid bûn û Hikûmeta Sûdanê girêdaye û nikare wê înkar bike. Tiştekî me yê bi vî rengî nîne. Sala 1970'ê Hikûmeta Îraqê li gor peymana Adarê biryar da li Kerkûkê serjimêriyê bike, bi heman awayê maddeya 140'ê, maddeya 140'ê jî ne ya niha ye lê ji 1970 heye, mebesta min naveroka wê ye. Li gor peymana 11'ê Adarê diviyabû li Kerkûkê serjimêrî bê kirin û rêjeya neteweyan bê destnîşankirin wek niha. Lê Saddam heta lawaz bû nekir û her bipaş dixist, heta 1974'ê ku êdî xwe bihêz kir û dest bi şer kir. Niha heman tişt dubare dibe. Ev fikira siyasî ya Îraqî nehatiye guhertin. Ev paşxistina niha bo wêya ye ku şert û merceke navxweyî û navdewletî yên baştir bên pêş, wê demê statuyekê li ser Kerkûkê ferz dikin û bi rêya yasa diçesipînin. Wek mînak wiha dikin ku parlamento biryarekê bide ku her bi xwe tê de piranî ne. Wê demê tenê du rê li ber Kurdan dimînin, an razî nabin û şer dikin, ku wê gavê wê bêjin ev biryara parlamento ye û tiştê hûn dikin dînîtî ye, yan jî Kurd razî dibin û mafê wan diçe.

**Ger helwêsta Kurdan her wiha bimîne, em dikarin bêjin Kerkûk çû?**

Bi baweriya min, niha hêviya çareserkirina pirsgirêka Kerkûkê kêmtir bûye, nemaze ku ev serjimêrî hat paşxistin, mirov bi tevahî bêhêvî dike. Dibe ku hêvî tenê di wê yekê de be ku li vê navçeyê şerekî gelek mezin biqewime, ev tişt jî dibe ku li welatekî cîran rûbide, ji ber ku li Îraqê û bi vê hevsengiya niha, ti asoyek ji bo çareseriya pirsgirêka Kerkûkê tune.

**Me dikarî di wê destûrê de gelek tiştan cihgîr bikin, wek sînorê Herêma Kurdistanê, Kerkûk jî di nav de. Lê em qîmeta demê nizanin. Kurd girîngiya demê nizanin û derfeta ku îro hate pêş dibe sibe careke din çê nebe.**

Du dengên Koma Çarnewa, Serhat û Suleyman ji bo Rûdawê:

# Muzîka me senteza Rojhilat û Rojava ye

Koma Çarnewa, ango koma ku awayên çar perçeyan disitire, li derveyî welet ava bûye û niha wek nimûneya muzîka nûjen tê nasîn. Nûnerên komê Serhat û Suleyman, dibêjin ku armanca wan pêşxistina mûzîka kurdî ye.

Koma Çarnewa sala 2000'an li Almanya ji aliyê komeke hunermendên Kurd ve hatiye damezirandin. Kom 6 sal e bi awayeke profesyonel muzîkê çêdike û navê xwe di nava Kurdan de belav kiriye. Nunerên Komê, Serhat û Suleyman, hunermendên Arabeskvan bi zimanekî tund rexne dikin û dibêjin "Bi tarzê arabeskê stranên şoreşgerî dibejîn." Serhat û Suleyman derbarê muzîka xwe de pirsên Rûdawê barsivandin.

**Serhat û Suleyman rexne li hinek sazî û hunermendên Kurd dikin û dibêjin ku ew "pîvan û qalîteya muzîka kurdî daketine."**



**"Me stranên gelerî ji bin erdê derxist û bêyî ku wan biguherînin, xiste nava repertuvara muzîka kurdî."**

**Rûdaw: Ji Koma Amed heta Koma Çarnewa hûn gelek rê meşiyan...**

**Serhat:** Dema Koma Amed, me li Stenbolê di NÇM'ê de karê muzîkê dikir. Ji ber pirsgirêkên siyasî yên li Tirkiyê me nikarîbûn zêde li wir bimînin û mecbûr man hatin Ewrûpayê. Me xwest em bi navê Koma Amed berdewam bikin. Lê hevalên NÇM ev nexwestin. Gotin, 'Hûn çûn sirgûnê û bûn penaber, navê Koma Amed nebin sirgûnê. Me jî naveke din dit: Çarnewa.

**Navê Çarnewa tê çi maneyê?**

**Suleyman:** Çar tê wateya perçebûna Kurdîstanê. Newa jî melodî ye. Em ji çar perçeyên Kurdistanê stranan dibejin. Navê komê ji xwe tê vê maneyê.

**Ji vir 20 sal berê bi tiliyan hunermendên Kurd dihatin jimartin. Lê îro bi sedan hunermendên Kurd hene...**

**Serhat:** Di muzîka kurdî de kêmasiya herî mezin ew e ku rexnekirin tune ye. Jî ber vê jî di vî warî de pêşketin çênabin. Ji bilî çend kes û koman muzîka bi qalîte çênabe. Lê li aliyê din di salên dawî de televîzyon û dezgehên medyaya Kurd zêde bûne. Divê qalîteya muzîkê pêş bikeve. Mixabin paş ve diçe. Ev jî ji ber birêvebiriyên şaş û qalibên siyasî yên berpirsên van saziyan pêk tê. Îro pîvanên muzîkê gelek ketine jêr. Sûcdar jî saziyên muzîka Kurd in.

**Arabesk û fantazî li ser muzîka Kurd bandorek çawa çêdike?**

**Serhat:** İbrahim Tatlises, Mahsum Kirmizigul û kesên din arabesk digotin û Kurdan jî guhdar dikir. Lê îro hinek hunermendên Kurd wek Dîyar, Kawa û kesên din ev yek dikin. Ev jî bi kopiyek xirab berdewam dike. Kesên ku berê ji Îbo û Mahsum re albûm çêdikirin îro ji hunermendên Kurd re çêdikin. Bi kopiyek xirab îro arabesk di nava muzîka kurdî de gelek xurt e. Gava tu ji wan re dibêjî 'bira hûn arabeskê çêdikin' qebûl nakin. Lê ya xirab ew e ku, bi tarzê arabesk stranên şoreşgerî dibêjîn.

**Lê ev kes zêdetir tên guhdarkirin...**

**Serhat:** Hunermendên esil Kurd dema bi tirkî digotin, ew jî dihatin guhdarkirin. Lê ev pirsgirêka saziyên Kurdan e. Ev sazî piştgirî didin hunermendên ku bi vî tarzê muzîkê çêdikin. Her roj dikevin televîzyonan û rûpelên rojnameyan... Ew kes popûlîst in û mûzika rojane çêdikin. Em naxwazin muzîkeke rojane çêkin.

**Hûn ji bo çi zêdetir stranên gelerî dibêjin?**

**Suleyman**: Gelek stranên gelerî ku niha em dibêjin di bin erdê de bûn. Me ew derxist, kir nava repertuara muzîka kurdî; êdî ew wenda nabin. Lê me ti carî rengê van stranan neguhert.

**Koma Çarnewa îro li her çar perçeyên Kurdistan tê naskirin?**

**Suleyman:** Tarz û stîla me baş nayê naskirin. Lê wek Koma Çarnewa li her çar perçeyên Kurdistan em tên naskirin û guhdarkirin.

**Hûn rewşa muzîka Başûrê Kurdîstanê çawa dibînin?**

**Suleyman:** Ez baş nabînim. Di muzîkê û medyayê de taklîtek xirab heye. Hunermendên Başûr dewlemendiya muzîka kurdî bi kar bînin ew ê bêtir bi serkevin...

**Hûn qet ji bo konseran çûn wir?**

**Serhat:** Na, em neçûn. Çend caran daxwaz çêbû lê em naxwazin bi aweyek nîvco herin. Em dixwazin bi kom herin. Em 8 kes in. Em dixwazin bi awayek profesyonel biçin û konseran bidin. Ev jî ji bo wan biha hat.

**Ev çar sal e we albûm dernexistiye, ji bo çi?**

**Suleyman:** Ev di hemû cîhanê de pirsgireka herî mezin e. Tu albûm çêdikî, di nav mehekî de dikeve înternetê. Şîrketên muzîkvan pere qezenç nakin. Hunermend jî. Ji aliyê din pirsgirêka aborî heye. Eger hunermendekî normal albûmek bi 10 hezar Euro çê bike, Koma Çarnewa albûma xwe bi 30 hezar Euro çêdike. Jî bo wê zehmet dibe.

**Ango hûnê di demeke nêzîk de albûmek nû çênekin ?**

**Suleyman:** Sedî sed em ê çekin. Le kengê, nizanim.

***Hevpeyvîn: Jîr Ax***

# Hemû dengên kevin tomar kirine

**Hêmin Melazade** Hewlêr

Tomargeha Hikmet Ebdulletîf Çexmaxçî dikeve beramber keleha Hewlêrê. Li tomargeha Çexmaxçî berhemên piraniya hunermendên kevin ên Kurd hene, ku ji aliyê bavê Hikmet ve hatine tomarkirin. Bavê wî di destpêkê de kel û pelên elektrîkê difirotin, lê jiber pir kêfa wî ji hunerê re dihat dikana xwe kir tomargeh. Niha sê hezar qewanên stran û muzîkê li vê tomargehê hene.

Ebdulletîf Çexmaxçî yekem kes bû li bajarê Hewlêrê di sala 1952'an de tomargehek li binî dîwarê kelehê vekir û piraniya stranbêjên Kurd û Turkmenên Hewlêrê yên wê heyamê li dora xwe kom kirin. Niha Hikmet tomargeha bavê xwe birêve dibe, lê zarokên wî ne amade ne bikevin dewsa wî.

Hikmet dibêje: "Berê piraniya stranbêjên wek Tahir Tofîq, Elî Merdan, Husên Elî, Resul Gerdî, Fûad Ehmed û Mişko yê Hewlêrî li tomargeha bavê min kom dibûn û li mala xwe stran ji wan re tomar dikirin."

Ebdulletîf Çexmaxçî di sala 1927'an li keleha Hewlêrê jidayik bûye. Li tomargeha wî nêzîka 3 hezar qewanên muzîk û stranên bi zimanê kurdî, erebî, tirkî, farsî, hindî û biyanî hene. Her qewanek ji demjimêrek heta 8'an dirêj e. Hikmet ragihand: "Ji sedî 60'ê berhemên li vê tomergehê hene, ji aliyê bavê min ve hatine tomarkirin."

Ebdulletîf Çexmaxçî di sala 1986'an di qezayeke trafîkê de liser rêya Bexda jiyana xwe ji dest da. Hikmet dide zanîn ku bavê wî di salên 70'an de ji bo hunermendên cuda gelek qewan tomarkirine. Navbirî nîgeraniya xwe pêşan dide ku ti kes rêz li vê kultûra resen nagire. Tenê mêrên bi temenên xwe mezin bo kirîna van kasêtên resen serdana wî dikin.

Herçiqasî navbirî destnîşan dike ku cihê dikana wî xerab e, lê kiryarên wê yên taybet bi ser riya wê ve dibin: "Pir kes ji Bexda tên ba me kasêtan dibin, dibêjin stranên ku li ba we hene li ti cihê din ê Bexda nînin, heta di arşîva radyoyan de jî nînin."




Hikmet kariye heta niha jimareke zêde ya berhemên hunermendên kevin ên Kurd biparêze. Lê pêşniyar dike ku hikûmet û aliyên peywendîdar ji niha pê de di parastina vê kelepora niştîmanî de hevkar bin, lê: "Ti kes awirekê jî li me nade."

Hikmet Ebdulletîf herwiha pêşniyar dike, hikûmet muzexaneyeke taybet a huner û muzîkê veke: "Bi her awayekî hikûmet bixwaze amade me ligel wan hevkariyê bikim, dikarim çend kesan fêrî bikaranîna van amûrên kevin bikim û stranan ji tirsa nemanê biparêzim."

Mebesta wî ew e ku ev berhemên kevin li ser sîstemên nû yên tomarkirin û arşîvkirinê bên veguhastin.

Hikmet Ebdulletîf Çexmaxçî ku di sala 1948'an de jidayik bûye, dibêje: "Hê zarok bûm, min ligel bavê xwe kar dikir. Loma dixwazim vê kultûra resen ku bavê min kom kiriye, biparêzim." Lê navbirî dilgiran e û dibêje: "Piştî min kes cihê min nagire. Du kurên min hene, lê herdu jî nizanin wateya kultûra resen çî ye û ne amade ne li tomargehê kar bikin."

Derbarê cihê ku bavê wî salên 60 stran lê tomar dikirin, Hikmet dibêje: "Holek û odeke me hebû. Resul Gerdî, Fûad Ehmed, Mihemed Arif, Îsawî Berwarî, Xelîl Eqrawî û Hesen Cizîrî li wê odê stranên xwe tomar dikirin û heta niha min hemû parastine. Zêdeyî 150 demjimêr dengê tomarkirî yê Mihemed Arif li ba me parastî ye."

Hikmet dide zanîn ku bavê wî stran ji hunermend Hesen Zîrek re jî tomar kirine û wiha dawiyê li axaftina xwe tîne: "Salên 60'an de Hesen Zîrek hat mala mamoste Mela Ebdulla û li wir xwediyê malê telîfona bavê min dike û jê re dibêje were ba me. Bavê min diçe û ahengekê ji wan re tomar dike û hê ev kasêt li ba min heye."

Di meha Mijdarê de pêşkêşî hezkiriyên şanoyê dike

# DestAR-Theatre "Bûka Lekî" ji nû ve nivîsand

Salihê Kevirbirî Stenbol

Di 15-20 salên derbasbûyî de Kurd weke şaxên din ên hunerê nebe jî, di warê şanogeriyê de gavên berbiçav û giring avêtin. Di nav şert û mercên gelek dijwar de kom ava kirin, şanoger gihandin, li dehan deveran bi turneyên xwe, hezkiriyên şanoyê ber bi xwe kişandin.

DestAR-Theatre yek ji van navendên şanoyan e ku navenda wê li Beyogluya Stenbolê ye. Koma navborî ligel ku xwediya temen û rabirduyeke kurt e, karûbarên hêja pêk tîne. Koma ku yekem car bi lîstika xwe ya "Reşê Şevê" kete rojeva hunera kurd, di 1'ê Cotmehê de jî bi lîstika "Cerb" perdeyên xwe bi heman lîstikê vekirin û bi lîstika "Qeşmerên Apoletî" çalakiyên xwe yên şanoyê berdewam dike. Li meha Mijdarê jî kom wê bi lîstika xwe ya nû ya bi navê "Bûka Lekî" ango "Bûka Naylon" ku bi naveroka xwe komedî ye, performansên xwe bidomîne.

DestAR-Theatre, xwediya sahnekê ye bi navê "Şermola Performans" ku sala par vekiribû. Hêjayî gotinê ye ku ligel tevahiya lîstikên komê gelek caran konser, semîner, gotûbêjên hunerî, çandî û wêjeyî li wir pêk tên.

DestAR-Theatre, bi lîstika xwe ya yekem "Reşê Şevê" gelek turne pêk anîbû, beşdarî li gelek festîvalan kiribû, ji ber ku xebatên xwe bi kurdî pêşkêş dike, bi bikaranîna "jêrnivîsa tirkî" profîla temaşevanên xwe berfireh kiribû û bi vê lîstikê xwe gihandibû 7 hezar temaşevanan.

Herçî lîstika "Cerb" ku ceribandineke bê-diyalog e, di raya giştî ya şanogeriyê de deng veda û bi vê sedemê gelek şêwirmendên şanoyê li ser nivîsandin. Heman lîstik yek ji xelatên 10. Lîonsê yên Şanoyê yê bi navê "baştirîn lîstika nû ya xweser a serdema sala nû" wergirtiye û serfiraziya xwe ya di vî warî de çespandiye.

Lîstika komedî ya bi navê "Bûka Lekî" ji hêla Mîrza Metîn ve, ji serpêhatiya/kurteçîroka wêjevanê Îranî yê navdar Sadiq Hîdayet a bi navê "Pitika li Pişt Perdê" bi şêweyeke serkeftî ji nûve hatiye şîrovekirin û nivîsandin. Koma Şanoyê plansaziya xwe dike ku li meha Mijdarê wê pêşkêşî hezkiriyên şanoyê bike. Berfîn Zenderlîoglu û Hamza Guzel lîstikvaniya wê dikin, ronahîsazî jî ji hêla Alev Topalê ve hatiye kirin, Dodan jî muzîk sazkiriye û Arjen Erzen dramaturiya wê pêk aniye.




Koma DestAR-Theatre yekem car bi lîstika xwe ya "Reşê Şevê" kete rojeva hunera kurd

Li hêla din DestAR-Theatre, 17'ê mehê xebata kursdayînê ya serdema nû daye destpêkirin. Di xebatên ku bi kurdî-tirkî pêk tên de, çalakî di bin van navan de tên kirin: Deng, nefes, diyafram, bilêvkirin, rîtim, tevgerên bedenî, pandomîm, jixweberî (dogaçlama), dramaya afirîneriyê, dîroka şanoyê û xwendinên edebiyatê. Li gor ragihandina rêvebiriya şanoyê, wê xebatên atolyeya şanoyê 6 mehan bidomin û di dawiya xebata atolyeyê de wê bi kursiyeran re kurteperformansek bê pêşkêşkirin.



## Mûzîka Nikpay Cordoba digihîne Kurdistanê

**Madrîd (Rûdaw) -** Hunermend Hamed Nikpay di sala 1977'an de li Îranê ji dayîk bûye û di 7 saliya xwe de dest bi stranbêjiyê kiriye. Wî di 9 saliya xwe de dest avêtibû ser tar û sîtarê jî. Di 20 saliya xwe de li ûd, erbane û tembûrê jî dixist. Ji nav xebatên wî du berhemên balkêş hene, yek bi navê "Ji Cordoba heta Kurdistanê", ya din jî bi navê "Xwediyê Vê Xakê" ya ku bi mebesta piştevanîkirina "Serhildana Kesk" li Îranê çêkiriye.

Hamid Nikpay ji bo Rûdawê axivî û sedema hilbijartina navê "Ji Cordoba heta Kurdistanê" ji xebata xwe re eşkere kir û got: min mûzîka vê stranê li ser mûzîka kurdî ya tembûrê û mûzîka flamênco çêkir. Min xwest ez cihekî ji van herdu mûzîkan re veqetînim, ji ber wê ji mûzîka tembûrê re min Kurdistan weke war hilbijart û ji bo mûzîka flamênco min bajarê Cordoba li Spanya veqetand.

Hunermend Nikpay ji sala 2005'an ve li bajarê Palo Alto, li eyaleta Kaliforniya ya DYA'yê dimîne. Nikpay li wir dema xwe di fêrkirin, nivîsandin û tomarkirina mûzîkê derbas dike.≤

# Sînema kurdî li festîvala Koreya Başûr bû!

Jîr Ax Pusan

15. Fîlm Festîvala Navnetewî ya Pusanê, îsal Kurd kirin mêvanên xwe. Bi hewldana serokê festîvalê, Kim Ji-Seok, îsal ji bo sînema kurd beşek teybet hat çêkirin û 8 fîlmên kurdî di çerçova festîvalê de hatin nîşandan.



Festîvala fîlman a Asyayê ya herî mezin, Pusan, ev 15 sale li bajarê Koreya Başûr, Pusanê, pêk tê. Festîval îsal jî navbera 9-15 Cotmeh ê de hat li darxistin, ew li cîhanê û zedetir jî li Asya yê gelekî navdar e. Heta niha gelek fîlmên kurdî li Pusanê hatine nîşandan û xelat vegirtine, lê îsal revebirya festîvalê ji bo Kurdan beşeke teybetî bi navê "Sînema Kurd" çêkir û 8 fîlmên Kurdî li vir nîşanî xelkên Asya da. Di nav fîlmên festîvala Pusanê de fîlmên wek, Yilmaz Güney Yol (Rê), Bahman Qobadî, "Nîvheyv", Miraz Bêzar "Min Dît", Mano Xelîl "Davidê Tolhildan", Hinêr Selîm "Vodka Lemon" jî hebûn. Herwiha li ser sînema kurdî bi tevlîbûna sedan kesan senîmerek jî çebû û li ser çanda kurdî jî konserên mûzîkê hatin li darxistin.

### Li ser sînema kurd semînarek taybet

Di senînera li ser sînema kurdî de derhenêr Miraz Bêzar, Derhenêr Mano Xelil û dîrektorê Festîvala Fîlmên Kurdî ya London ê Mistefa Gûndogdu wek axaftvan beşdar bûn. Miraz Bêzar ê xwediyê gelek xelatan li vir axivî û bal kişand ser sînema Yılmaz Güney. Bêzar got, "me ji Yilmaz Güney hêz girt, ew ji bo me bû roniyek. Bi film û jiyana xwe ji derhenêrên Kurd ên ciwan re bû pêşeng." Mano Xelîl û Mistefa Gûndogdu, jî gotin, ji bo dema pêşiyê "em hêvîdarin." Moderatorê semînerê profesorê Zanîngeha Dongseo ya Beşa Arşîv, Prof. In Young Nam, li ser fîlmên Koreya Başûr lêkolîn kiriye. Derhênerê Kurd, Şewket Amîn Korkî, ku sala borî li Pusanê xelat girtîbû, di festîvalê de axivî û got: "ev ji bo me Kurdan bernameyeke gelek başe, sînema Kurdî roj bi roj pêşvê diçe. Hatina me ya li vir jî mînakeke."

Ji bilî vî bernemaya teybet a fîlmê derhênêr, Ebrahim Saeedî, "Mandû" û fîlmê Hesen Elî yê bi navê "The Quarter of Scarecrows" di bernama festîvalê de hat nîşandayîn.

### "Ev yek ji bo me rûmet e"

Di dema birêveçûna 62. Fîlm Festîvala navdar a Fransî, Cannesê, Serokê Pusanê, Kim Ji-Seok, ji derhenêrê Kurd yê navdar Behmen Qobadî û xwediyê şîrketa fîlman a Kurd Mîtos, Mehmet Aktaş, re gotibû: "em wek festîvala Pusan dixwazin bernameyek teybetî ji bo sînema kurdî vekin û wan dawetî Koreya Başûr bikin. Ev yek wê ji bo me bibe rûmeteke mezin. Ez sînema kurdî ji nêzde di şopînim û gelek keyfa min jê re tê. Em dixwazin ji komek fîlmên kurdî bernameyek teybet çêbikin." Herdu sînemakarên Kurd jî biryara Kim Ji- Seok bi kêfxweşî pêşwazî kiribûn û spasiya xwe jê re gotibûn.

## Serokê Dîwana Serokatiya Herêma Kurdistanê:

# facebook a Mesûd Barzanî tune



**Kawe Şêx Ebdulla** Silêmanî

Siyasetvanên Başûrê Kurdistanê an bi agahdarî an bê agahdariya xwe, di Facebookê de cîh digrin. Haya Serokê Herêm Kurdistanê jê nîne ku rûpelek bi navê wî hatiye vekirin.

Li gor şopandina Rûdawê, ji bilî herdu cîgirên Talabanî piraniya endamên polîtburo û serokatiya YNK'ê rûpelên wan di Facebookê de hene û haya wan ji van rûpelan heye, lê ji berpirsên PDK'ê ji bilî Mesrûr Barzanî ku xwediyê rûpeleke çalak e, ti berpirsê din ê vê partiyê Facebooka wan nîne.

Facebook di sala 2003'an de ji bo çêkirina têkiliyan ligel hevalên xwendekar, ji aliyê Mark Zukerburg ligel Dasten Muskufter û Chris Hues hat damezrandin. Niha ev malper wek tora peywendiyan a herî mezin a civakî di internêtê de tê zanîn û nêzîka 500 milyon beşdarên wê hene. Li Sûriyê û Îranê Facebook qedexe ye; li Herêma Kurdistanê ji sala 2009'an şûnde rêjeya beşdarîkirinê Facebookê bi awayekî berçav zêde bû.

### Serokê Herêma Kurdistanê bi şev Facebooka xwe vedike

Serokê Dîwana Serokatiya Herêma Kurdistanê Fûad Husên ji bo Rûdawê got ku Serokê Herêma Kurdistanê di Facebookê de ne beşdar e û haya wî jê tune ku bi navê wî rûpelek hatibe vekirin: "Eger demeke ku Serokê Herêma Kurdistanê beşdarê Facebookê bibe, wê xelkê lê agahdar bike da ku serdana rûpela wî bikin."

Berpirsê Ragihandinê yê Serokê Herêma Kurdistanê Tiwana Ehmed diyar kir ku Serokê Hikûmetê li gor demê internêtê bikar tîne û herdem laptopek pê re heye. "Zêdetir bi şevan diçe ser Facebookê û bi xwe bersiva pirs û pêşniyaran dide." Li gor Twana Ehmed, Serokê Herêmê bi Facebookê dilxweş e û heta niha tiştê ku wî bêzar bike tune.

Fûad Husên jî wiha axifî: "Serokê Herêma Kurdistanê, beşdarî Facebookê nebûye." Herwiha Cîgirê Yekem ê Sekreterê YNK'ê Kosret Resûl û Endamên Polîtburoya YNK'ê Sadî Ehmed Pîre û Hakim Qadir Hemecan di Facebookê de xwediyê proîlê ne.

### "Nikarim komputerê bikar bînim"

Ji bilî Barzanî, Talabanî û Noşîrwan Mistefa, Hêroxan, Mam Rostem, Şêrîn Amêdî, Azad Cundiyanî bêyî ku haya wan jê hebe malper bi navên wan hatine vekirin. Endama Komîteya Navendî ya Partiya Demokrat a Kurdistanê PDK'ê Şêrîn Amêdî dibêje: "Dema min ji bo înternetê tune, lê bi nav û wêneya min li Facebookê malperek hatiye vekirin." Amêdî herwiha eşkere kir ku wê biryar daye di demeke nêzîk de beşdariya Facebookê bike: "Ne bi navê xwe, lê bi navê Balyoza Aştiyê ez ê malperekê vekim."

Mam Rostem ku kesekî naskirî yê Bizava Goran e, diyar kir: "Ez her nizanim kompuîterê bikar bînim û ti tiştî jê fam nakim, loma naxwazim tiştan tevlîhev bikim."

Berpirsên ku di Facebookê de diyar in, piranî endamên Serokatiya YNK'ê ne. Endamê Desteya Rêvebiriya Polîtburoya YNK'ê û Berpirsê Asayîşa Giştî ya Herêma Kurdistanê li Silêmaniyê Hakim Qadir Hemecan ragihand: "Ji bo nêzîkbûna welatiyan Facebook metodek baş e. Ez rojane serdana malpera xwe ya Facebookê dikim û bi xwe birêve dibim."

Cîgirê Polîtburoya YNK'ê û Berpirsê Rêxistinên vê partiyê li Behdînan Sadî Ehmed Pîre daxuyand: "Rûpela min di Facebookê de heye û kesên ku serpereştiya malpera min dike, rojane min ji name û pêşniyarên xelkê agahdar dike."

Li gor çavkaniyeke buroya Emîrê Komela Îslamî ya Kurdistanê Elî Bapîr niha rûpela navborî di Facebookê de nemaye: "Berê malpera Mamoste hebû, lê ji ber hin nivîs û nameyên ne hêja, me bi agahdariya wî malper daxist. Ew naxwaze malpereke nû veke."

---

**Him Mele Ehmed**

## Lêkolînek derbarê malperên kurdî de

# Tikandin, hîts û xapandin

**Mezintirîn malperên kurdî li gor parçeyên Kurdistanê: Li Başûr: Peyamnêr, Awêne, Pukmedia û Rûdaw. Li Bakur: FiratNews. Li Rojhilat: RojhelatTimes. Li Rojava: Gemya Kurda.**

Malpera Civata Xortan ji bo şopandina belavbûna bikarhênerên Kurd di înternetê de, li ser malperên kurdî lêkolîneke çêkir. Di vê lêkolînê de agahiyên 171 malperên kurdî ji seranserî cîhanê û herçar parçeyên Kurdistanê hatine komkirin. Di vê lêkolînê de mezintiya malperan ne bi naveroka wê, lê bi hejmara xwendevan û bikarhênerên wê yên rojane tê berçavkirin. Ji bo vê lêkolînê hejmara mêvanên rojane yên her malperekê ji çend jêderên înternetê hatine komkirin. Bêguman jêdera herî girîng di vê lêkolînê de agahiyên ji malpera Alexa ye, ku li seranserî cîhanê wek dezgeha herî xurt di pêşkêşkirina van agahiyan de tê nas kirin.

Di encama lêkolînê de derdikeve ku kapasîteya înterneta kurdî di rojê de tenê 125.000 xwendevan in. Hejmara hemû xwendevanên rojane yên 171 malperên kurdî digîhe nêzîkî 125 hezar xwendevanî. Ango di mehê de nêzîkî 4 milyon kes. Encama herî balkêş di vê lêkolînê de ew e ku ji sedî 83 ji bikarhênerên înterneta kurdî dibin mêvanên 11 malperan. Hemû malperên din, ango 160 malper, tenê ji sedî 17'ên bikarhêneran li hevdû belav dikin. Ji van 11 malperên herî mezin 10 ji Başûrê Kurdistanê ne, tenê yek ya Kurdên Bakur e. Kurdên Rojava li gor biçûkbûna hejmara xwe di înternetê de jî biçûk in, lê Kurdên Rojhilat li gel ku ji Kurdên Başûr bêhtir in, lê hebûna wan di înterneta kurdî de ji ya Kurdên Rojava biçûktir e.

Encamek din a balkêş girêdayî naveroka malperan e. Rewşenbîr û dezgehên Kurd hêza herî bêhtir didin malperên nûçeyan û siyasî. Eger cûreyên din jî hebin, wek mûzîk, huner, wêje, pc, ziman an pirtûk, lê xebata herî zêde di warê nûçeyên siyasî de xuya dike. Hemû malperên din xebatên takekesan e, ku ji ber tunebûna hêza aborî nikarin bên nûkirin, lewra mêvanên wan jî tune ne.

### Bikarhênerên înterneta kurdî mêrên temenmezin in

Eger em li 50 malperên herî mezin temaşe bikin, em ê bibînin ku nêzîkî ji sedî 95'ê bikarhênerên înterneta kurdî diçin malperên nûçeyên siyasî. Wek tê zanîn xwendevanên wan piranî mêrên temen mezin in, zêdeyî 25 salî. Jin û ciwanên Kurd kêm dikevin malperên kurdî. Kêmasiyeke xirab di înterneta kurdî de tinebûna malperên zarokan e. Hejmara bikarhênerên înternetê yên zarok roj bi roj mezintir dibe. Ev komên girîng û mezin dibin mêvanên malperên biyanî. Eger hejmara ciwanên Kurd ne gelek ba, bê guman malperek mîna Facebook zimanê kurdî derbasî perên xwe ne dikir. Wêneya belavbûna bikarhênerên Kurd wek ya partî û rêxistinên siyasî yên Kurd e. Li Rojava milet bi rengekî wekhev di nav gelek partiyan de belav bûne, di înternetê de jî bikarhênerên malperên rojava di çend malperan de kom nebûne. Li Bakur siyaset û xebata rêxistinî zêdeyî tenê di destê alîgirên PKK'ê de ye û bikarhênerên înternetê jî tenê di destê malperekê de ye. Li Başûr jiyana siyasî di destê 4-5 partiyan de ye (li gel dezgehên hikûmetê). Wisa jî ji sedî 95'ê bikarhênerên înternetê di destê 10 malperan de ne.

*Eger hejmara Kurdên her parçeyekî wek li jêr bê hesibandin, wê encamên wiha derdikevin: Li Bakur 16 milyon, li Başûr 4 milyon, li Rojava 2 milyon û li Rojhilat jî 7 milyon.*

***Li Bakur serê 1 milyon kesî rojane 1250 kes dikevin malperên kurdî. Li Rojhilat 300, li Başûr 25500 û li Rojava jî 1800 kes.***




### Bikarhêner, serdan, dîtina peran û hits

Gelek caran hinek malper radigihînin ku hejmara hitsên wan ên mehekê gihaye milyonan. Xwendevan dikevin baweriyekê ku ev malper ji aliyê sedhezaran û milyonana ve tên serdankirin. Divê mirov cudahiya di nav bikarhêner, serdan, per û hitsan de nas bike.

Her kompûterek bi malperê ve tê girêdan ji hêla teknîkî ve wekî bikarhênerekî tê hejmartin. Her carekê bikarhêner derbasî malperekê bû, ev çalakî wekî serdanekê tê hejmartin. Lê eger ew derket, wî browserê înternetê girt û disa vekir û derbasî malperê bû, wisa serdanek din zêde dibe. Di her serdanekê de gava bikarhêner pereke nû veke, ango gava ew lînkekê bitikîne, dîtina peran zêde dibe, ango "Dîtina Peran" nîşana çalakvaniya bikarhênerên malperekê ye.

Gava mêvanê malperê lînkek tikand, perek vedibe û hejmarek wêne, grafîk, elementên medyayî wek flash, video û stran bi hev re vedibin. Her yek ji van elementan wek hitsekê tê hejmartin. Gava mirov malperek vekir, dibe ku yekser 30 yan 40, 50 hits bên hejmartin. Her ku lînkek din bê tikandin ew hits dîsa tên hejmartin, eger kesekî di malperekê 4 babet vekir 200-300 hits tên hejmartin. Ev hejmar gelek caran dibe sedema şaşşîrovekirina mezinbûna malperekê.

Serokê Odeya Pizîşkên Amedê Şemsettîn Koç:

# Qedexekirina ziman psîkolojiya mirovan xerab dike

Serokê Odeya Bizîşkên Amedê Şemsettîn Koç, diyar kir ku wan bi kongreya tenduristiyê ya bi kurdî nîşanî hemû cîhanê daye ku kurdî dikare bibe zimanê zanyariyê û xwest li hemû welatan qedexeya li ser ziman bê rakirin. Koç, destnîşan kir ku qedexekirina ziman psîkolojiya mirovan xirab dike û nahêle şexsiyet bi pêş bikeve.






**Nezî 600 nûner û bizîşk tevlî kongreyê bûn û gelekan axaftinên xwe bi kurdî kirin; axaftinên bi zimanê din jî bo kurdî hatin wergerandin**

**Li milê çepê: Serokê Odeya Bizîşkên Amedê, Şemsetîn Koç**

Odeya Tabîbên Amedê di 14-16'ê Cotmehê de, li Navenda Çand û Hunerê ya Cegerxwîn, kongreyeke bi navê "2'emîn Rojên Tenduristiyê yên Mezopotamyayê" li dar xist. Ji çar parçeyên Kurdistanê û welatên Ewropayê nêzî 600 delege û bizîşk tevli kongreyê bûn. Di kongreya ku bi kurdî hate lidarxistin de li ser beşa onkolojiyê û nexweşiya pençeşêrê axaftin hatin kirin. Di serî de bizîşk Mahmut Îlhan, Şukru Guler, Huseyîn Bektaş piraniya bizîşkan gotarên xwe bi kurdî pêşkêş kirin û ji bo piştgiriya gotaran nîşandana slaytê jî hate kirin. Kongre bi 8 rûniştinan pêk hat.

Serokê Odeya Bizîşkên Amedê Şemsettîn Koç ji Rûdawê re axivî û derbarê ziman û kongreyê de agahiyên girîng dan.

**We çima pêdivî bi çêkirina Rojên Tenduristiyê yên Mezopotamyayê dît?**

Sala borî me kongreya yekemîn li dar xist. Ji 16 welatên cîhanê bijîşkên Kurd hatibûn Amedê û tevli kongreyê bûbûn. Me xwest hemû bijîşkên Kurd êdî di tenduristiyê de zimanê kurdî bikarbînin. Ji bo vê yekê pêdivî bi kongreyên wiha hene. Di kongreyê de hemû axaftin bi kurdî ne.

**Di kongreyê de bikaranîna ziman peyameke çawa da derdorê?**

Di hin derdoran de baweriyeke wisa hebû ku bi zimanê kurdî mirov nikare pirsgirêk û pêşveçûnên tenduristî, aborî û jiyana civakî binirxîne. Digotin kurdî nikare bibe zimanê zanyariyê. Me xwest em vê nêrînê biguherînin. Me hem bi zaravayê kurmancî û hem jî bi zazakî gotar pêşkêş kirin. Ji bo mêvanan jî me bi riya wergeriya simûltane kurdî wergerê ingilîzî û tirkî kir. Ji ber vê yekê me Rojên Tenduristiyê yên Mezopotamyayê li dar xist. Em ê ji vir û şûnde jî vê kevneşopiyê bidomînin.

**Qedexekirina ziman li ser derûniya mirovan bandoreke çawa dike?**

Qedexekirina ziman bandoreke neyînî li ser psîkolojiya mirovan dike. Qedexe azadbûna mêjî asteng dike û nahêle ku kesayet bi pêş bikeve. Ku kesayet bi pêş nekeve, mirov nikare hem civaka xwe û hem jî cîhanê bi pêş bixe. Beriya her tiştî divê azadî pêk bê. Ziman ti caran nabe amûra parçebûn û cudaxwaziyê. Berevajî vê yekê ziman tim yekitî û bihevrebûnê bi xwe re tîne.

**Hûn nêzikatiya Dewleta Tirk a li hemberî kurdî çawa dinirxînin?**

Li cîhanê zimanekî ku ji aliyê girseyeke pir biçûk ve tê bikaranîn jî tê parastin û ji bo ku ew ziman wenda nebe, riyên çareseriyê têne afirandin. Lê em dibînin ku zimanekî ku bi milyonan Kurd pê diaxivin, tê qedexekirin.

**Di vê kongreyê de çima bi taybetî nexweşiya pençeşêrê hate guftûgokirin?**

Hûn dizanin nexweşiya pençeşêrê li cîhanê û herêma me pir e. Ger di dema xwe de neyê teşhîskirin, ev nexweşî mirov dikuje. Kesên ku navê pençeşêrê dibihîzin, dibêjin qey xilasiya ji vê nexweşiyê tune ye. Bi pêşveçûnên nû, êdî ev ne wisa ye. Ger zû bê teşhîskirin, dermankirina vê nexweşiyê mimkûn e.

**Hûn rewşa standardîzekirina kurdiya tenduristiyê çawa dinirxînin?**

Di bingeha tenduristiyê de têgehên latînî esas têne girtin. Dema ku bi ingilizî, almanî yan jî bi zimanekî din tê axaftin, ji sedî 20 têgehên tenduristiyê (tip) bi latînî ne. Ji ber vê yekê em Kurd jî nikarin van têgehên latînî biguherînin. Lê em ê hewl bidin ku bi kurdî têgehên tenduristiyê peyda bikin û di tenduristiyê de zimanekî hevpar ê kurdî bi kar bînin. Em ê kurdiya tenduristiyê standardîze bikin. Lê têgehên latînî ku hemû cîhan bikartîne, wê li cihê xwe bimînin û di kurdî de jî wê ew têgeh bi heman awayî bidomin. Jixwe di navên nexweşiyên tenduristiyê yên kurdî de ti pirsgirêk tune ye û em jî van navên ku rojane têne bikaranîn, bi kar tînin.

*Hevpeyvîn: Bawer Çem*

---

Tendirustî

## Periyoda jinan



Dr. Sacît Guneş

Her keç di temenê 11 – 14 salî de mehika wan (periyod) dest pê dike, ango dikevin temenê balixiyê de. Lê gelek keçê ciwan hene ku di 9 saliya xwe de jî periyoda wan dest pê dike, ev yek di warê tendirustiyê de ji aliyê bizîşkan ve pir xwezayî tê dîtin. Bizîşk tînin ziman ku eger periyoda keçekê heta 17 saliyê dest pê neke, wê demê sedî sed pirsgirêkek heye. Bi jinan re 2 hêk hene, rêjeya navîn ya mezînbûna hêka jinan derdorê 0,2 mîlîmetre ye.

**Keçên ciwana di dema periyodê de bi çi pirsgirêkan re rûbirû dimînin?**

**Dr. Sacît Guneş:** Di serî de keçê ciwan bi pirsgirêkên cûrbecûr re rûbirû dimîn: ji ber cara yekemîn e ku gav diavêjin temenê balixiyê, ev yek ji bo wana gelekî nû yê. Di serî de psykolojiya wan pir ne baş dibe, ji ber ku civaka me ne vekirî ye û ji keçên ciwan re li ser vê yekê pêşagahdarî, ango amadekirina wan, kêm e. Wek tê zanîn li cem me Kurdan perda keçkaniyê pir girîng tê dîtin, dema ku keçên ciwan nayên agahdar kirin, cara yekemîn ji wan re wisa tê ku ew perda keçkaniyê tiştek pê hatiyê. Ji bo wê ez dibêjim divê ku dayîk ji keça xwe re bêje ku her keçên ciwan di wî temenî de dikeve dema periyodê. Li welatên Ewrûpayê ev yek ne wisa ye, hîn keçikên wan 6-7 salî ne, ew li dibistan an jî ji aliyê malbatê ve tên agahdar kirin, ev yek pir girînge.




**Gelek keç û jin di dema periyodê de pir xwîn winda dikin, zirara vê heye?**

Gelek zirarên xwîn windakininê hene, bi piranî sedemê pir xwîn windakirinê hormonel e. Lê dema beriya balixbûna keçek ciwan tiştek wisa biqewime, divê sedî sed ew xwe nîşanî jinekologekê bide. Piştî temenê 40 salî jî, dema ku disa jin pir xwîn winda bikin, divê ew jî li cem jinekologan kontrolek taybet derbas bikin, bi utrasyon bên kontrol kirin û li ser pençeşêra rehîm lêkolîn bê kirin. Herwiha zirarê kêm xwînhatinê ji hene, kesê kêm xwînê dibînin pir zû diwestin, dilê wan pir zû lêdixe, zû nexweş dikevin û zû bi sermayê dikevin. Xwîna periyodê ji 2-8 rojan berdewam dike, lê dema ji wan rojan dirêjtir be, ev ne normal tê dîtin. Dibe ku di xwîna periyodê de pihtilî jî nebe, ji ber ku di xwîna periyodê de ev tune, dema ev xuya bike, wê demê ev nîşana pirsgirêgekê ye.

**Sedemên ku jin bi rek û pêk nakevin periyodê çi ne?**

Ev dibe ku pirsgirêka idabê, myom, polîp, nexweşiyên hormona, hêkdayîn, derman, aletên taybet ku jin ducanî nebin (spîral) be, ev hemî bandor dikin ku periyoda jinan bê rêk û pêk be.

**Amadekirin: Zelal Çelîk**

** Dr. Sacît Guneş jinekolog e û ji Bakurê Kurdistanê ye. Ew niha li Stenbolê dijî*

